BasNûçe
HERDEM RASTÎ
Rojname ya heftane ya nûçeyî - 2.5 TL
Hejmar: 51 27 Nîsan - 3 Gulan 2015 basnews.com



Farqîn:
## Bê dengbêjî nabe

R16

# Seyfo ji bîr nekin!

Ji serencama komkujiyên ku di dema osmaniyan de li ser komên olî û kêmnetewan pêk hatine yek jî Seyfo ya li hemberî suryaniyan e. Di salên navbera 1909 û 1915'ê de tevî ermenî û kurdan bi deh hezaran suryanî jî têne qetilkirin û sirgûnkirin.

Piştî ku komkujiya ermeniyan ji aliyê gelek dewletan ve weke 'jenosid' hat pejiradin Seyfo ya ku di encamê de nêzîkî 300 hezar suryanî hatine kuştin jî hat rojevê. Gelê suryanî dixwaze Seyfo we komkujî bê qebûlkirin û tanzîmkirin. R02 - 3



Kobanê:
## Birçîbûn û nexweşî

Bi vegera şêniyê Kobanê ku ji ber şer koçî Bakur kiribûn arîşeyên nû her zêde dibin. Xetereya birçîbûn û nexweşiyan tahde dide şêniya ku vegeriya ye û bo ku rê li ber nexweşiyan bê girtin û mayînên ku DAIŞ'ê çandine bêne paqijkirin jî banga rayedaran a li gel cîhanê didome. Li hêla din bi zêdebûna gelheya nava bajêr jî kêmasiya ard û xwirekan destpêkir. Her wiha ji ber termên endamên DAIŞ'ê gelek ajalên jardar jî li nava bajêr peyda bûne. R08 - 9

## Barzanî: Êzdî wê çarenûsa xwe diyarkin



Serokê RHK'ê Barzanî ragihand ku ji bo Şengal bibe parêzgeh ewê hewlbidin, ewê rê nedin ku Heşdî Şabî destwerdana Herêma Kurdistanê bike. Barzanî got ku wê ezdî çarenûsa xwe bixwe diyar bikin. R06

## Rojev Musil û serxwebûn e

Serokê Rêveberiya Herêma Kurdistanê (RHK) Mesûd Barzanî li ser vexwendina Washîngtonê di rojên pêş de serdana Emerîka'yê dike. Te gotin ku bi serdana Barzanî, ragêşiya li ser têkiliyên Hewlêr û Washingtonê ya ku bi awayekî nexuyayî didome dê bi dawî bibe û di navbera herdû peytexten de rûpeleke nû bê vekirin. Çavlirê ye ku Barzanî nerazîbûna xwe ya di derheqê polîtîkayên Emerîka'yê ku Iraqê weke esas digirin bîne ziman. R04 - 5




**Siwar Bedirxan**

Proseya komkujiyan a deshilatdariya osmanî ku bi awayekî sistematik li hemberî xelkên 'xeyrî misîlm' da destpêkirin bi dehan komên olî, mezhebi, netewî di deraxekî 'serjikirinî' re derbas kir bêguman. Ermen, suryanî, cihû, mesihî, elewî, kurd, laz, çerkez û hwd. Şûrê osmaniyan li ser erdnîgara rengîn a govenda gelan li stûyê van hemûyan şidî û seranserî xakê zivirand bazara kadawrayan. Helbet 'însafa' osmaniyan herî zêde li mala ermeniyan bû mêvan lê gelên din jî bi têra xwe av ji wê kaniyê vexwerin. Bo mînak kurd, elewî, rûm û mixabin suryanî. Ew serencama ku ji 24'ê Avrêla 1915'an gihîşt asteke herî tirsnak jêrgeha xwe ji qetliyamên din dagirtibû. Lê ew dîrok bû daliqandina alaya bêbextiyê ya li lûtkeya herî bilind. Di ber re jî suryanî hebûn ku 'divê bihatana şûştin'. Di wê demê de desthilatradariyê bi mehkûmkirin û sirgûnkirina rewşenbîrên ermenî îşareta pêşpirka xwe ya bi qetliyamkarên cîhanê re nîşan da. Destpêka sist hêdî hêdî ber bi bagehbûnêve diçû û di demeke nêz de gihîşt kendalê herî bi xof û patoza hêranê dest bi gerê kir. Li hêlekê sirgûna rewşenbîrên ermenî, rûm û sûryaniyan li dar bû, li hêla din jî leşkerên dewleta osmanî êrîşî ser gund û malên xelkên sûryanî, ermenî û ruman dikir. Xelkê sûryanî yê ku niştecihên Merdîn, Colemêrg, Sêrt, Dîlok Riha û Amedê bû nikarîbûn rê li ber komkujiyê bigrin û ji hêla dewletê ve ketin qefikê. Ne dengê ku ji dêran radibû têrî hewarê kir û ne jî yezdanên li esûmanan gihîşt hewara wan û osmanî ezraîlê herî bêbext bû li ber deriyên wanên kilîtnekirî. Xwîna ermeniyan ket ser ya suryaniyan, ya cihûyan ket şopa ya rûman, elewî li ser diwarên mesihîyan de ketin xarê û kurd bi şûrên ku xwîna hemûyan lê ziwa nebibû hatin 'hembêzkirin'.

Di vê heşermeşerê de gel û komên ku karibûn hinekî li ber xwe bidin an şemaqa sertextan hinekî lê vegerînin jî hebûn lê suryanî ne xwedî hêzeke bi vî rengîbûn jî û wan jî derba herî giran li ser rûyê xwe hewandin. Rewşenbîrên wan kêmbûn, nikarîbûn di wê demê de ji raya giştî ya cihanê re komkujiyê eşkere bikin û ragihînin. Ji komkujiya li ser xelkê sûryanî yên niştecihên Mêrdîn, Amedê re (Fermana Filleha yan jî Sayfo) dihat gotin. Ev gotin hîn jî di bîra xelkê de ye û berbelav e.

Qetliyama suryaniyan ku her tim di bin siya qetliyama ermeniyan de maye pir nehatiye zanîn, ragihandin û li ser lekolîn nehatine kirin. Raya giştî û cîhan ji vê pir hayidar nebûye. Lê li gor lêkolîn û xebatên ku li ser qetliyamê hatine kirin, di encama bûyerê de di navbera 270 hezar û 300 hezarî de welatî hatine kuştin. Bi hezaran malbat radestî koçberiyê bûne û mal û milkê wan hatiye wêrankirin. Her çiqas rastiya mijarê ji vê encamê mezintir be jî, dewlet û nêzikahiya fermî çawa ku di hemû berpirsiyariyên xwe de tiştekî din dibêje, di derheqê qetliyama suryaniyan de jî rastî bereveji hatiye qebûlkirin û fêrkirin. Her çiqas ku dewleta Tirkiye'yê heta niha tiştekî berbiçav negotibe jî li gor agahiya fermî, qaşo wê demê gelê suryanî li hemberî dewletê serî rakiriye û hêzên çekdar li hember dewletê avakirine û êrîşî derdorê kirine. Lê ew nêzikahî helwesteke ku herkes nasdikeye û ji rastiyan dûr e. Li gor agahiyan tenê li Amedê beriya Yekem Şerê Cîhanê 173 hezar 945 suryanî hebûne û piştî şer ew hejmar daketiye 30 hezar û 260 kesî. Dîsa li Mêrdînê beriya şer hejmara suryaniyan 73 hezar 943'ê ye û piştî şer ew hejmar jî daketiye 24 hezar û 70 kesan.

Bi minasebeta 100 saliya komkujiya ermenî û sûryaniyan li hemû dinyayê û li Bakurê Kurdistanê û li Tirkiye'yê xelkê ermenî û sûryanî bi rêzeçalakiyan dixwazin komkujiya ku li ser wan hatiye kirin ji aliyê dewleta şopgir a osmaniyan ve bê pejirandin û lêborîn ji wan bê xwestin lê tirsa ku ji wê rojê ve ketibû marîpişta wan hîn jî venekşiye ji xwîn û damarên wan.

### "Divê komkijî baş bêne tehlîlkirin"

Midûrê Giştî yê Rojnameya Sabro'yê Tuma Çelik jî yek kese ku heman daxwazê dike û bo vê jî danûstendina xwe ya bi vî rengî didomîne li ser bûyer û Komkujiya Sayfo ya ku li ser sûryaniyan hatibû kirin rawestiya û da zanîn ku Tirkiyê mîratxwira dewleta osmani ye û tiştên ku pêk hatine napejirîne û ev yek jî dibe sedem ku kêşe mezintir bibe. Di berdewamiya axaftina xwe jî deTuma Çelik li ser bûyerên 1915'an rawestiya û wiha got: "Li gor min di bingeha vê komkujiyê de desthilatdariya 1915'a ye. Divê bûyerên ku desthilatdariya 1915'an dane destpêkirin baş bêne tehlîl kirin. Eger ew bûyer neyên tehlîl kirin û neyên zanîn em wisa difikirin ku ew ê komkujiyên ku hatine kirin neyê ronîkirin û ew ê rê li ber komkujiyên din jî vebe. "

### "Armanc yekparêzî ye

Di berdewamiya axaftina xwe de Çelik li ser înkarkirin û asîmilasyona Tirkiyê ya li ser xelk, ol û baweriyên jî rawestiya û eşkere kir ku Tirkiyê bi polîtikayên xwe bi tenê ne komkujiyên berê înkar dike û niha jî komkujiyê didomîne. Her wiha Çelik ragihand ku komkujiya ku li ser xelkê sûryanî hat kirin komkujiyek fizîkî bû û dewletê dixwest li nav sînorên wê ji bilî tirkan û misilmanan tu kes nemîne. Çelik amaje bi wê yekê jî kir ku xelkê dewleta osmanî ji holê ranebûye feraseta wê bi sazî û dezgehên Komara Tirkiyê li ser piyan maye û dewleta osmanî bi Komara Tirkiyê re dirûv guherandiye. Çelik wiha berdewam kir: "Hinek dibejin ku împaratoriya






osmanî di 1918'an de piştî herba cihane ya yekemîn belav bû û dewletek nûh derket hole. Li gor min rewşeke wisa û tiştekî wisa tune ye. Împaratoriya osmanî xwe guhurand sînorên xwe guherand. Lê bi mantiq, bi saziyan hebûna xwe domand. Desthilatdariya Cemiyeta Îttîhat û Terrakî heta îro li Tirkiyê berdewam dike. Ew wê demê bi nave Cemiyeta Îttîhat û Terrakiyê bû. Piştre jî navê xwe Partiya Komarî ya Gelan. Wê ferasetê hebûna xwe Partiya Demoratê jî domand. Îro jî partiyên ku li ser desthilatdariyê ne vê feraseta didomînin. Feraseta wan yekparezî ye. Ji doh heta îro dixwzin nasnameyek tirk, Misilman û Sunne derxin hole.

### "Jenosîdeke bi bername li dar bû"

Li hêla din Çelik ragihand ku proseya sîstematîk a li ser xelkê ermenî û srûryanî di sala 1915'an de nehatiye kirin û beriywa wê di sala 1909'an de li bajarê weke Riha, Edeneyê ermenî û sûryanî hatine qetilkirin û jenosîda li ser kêmneteweyan bi awayekî sîstematîk berdewam kiriye. Her wiha Çelik amaje bi wê yekê jî kir ku komkjiyên ku li ser xelkê kêmnetewe yan heyî bi bername û ji hêla kesên pispor ve hatine amade kirin û sal bi sal ew li ser hin netewe û ol û baweriyan hatiye sepandin. Çelik bal kişand ser jenosîda xelkê sûryanî yên Colemergê jî û wiha axivî. Di sala 1915'an bi şiklekî sîstematîk û rêxistinkirî komkujî li tevahiya osmanî bi erişên çeteyan hat organîzekirin. Jenosîdeke ku bi destê leşkerên osmanî hatiye kirin heye. Vê jenosîda bi bername berdevam kir. Di sala 1924'an de nestûriyên ku li Colemêrgê bûn hatin sirgûn kirin. Di sala 1942'an de Baja Heyîne dîsa anîn. Di salen 1950'î de bi Bûyerên 5-6'êÎlonê hatin kirin. Bi salên 1970-1980'yî êrîşî kurdan kirin û hîn jî êrîşên li ser kurdan berdewam dikin."

### "Dêr û manastir kirin mizgeft"

Çelik di berdewamiya axaftina xwe de bal kişand ser daxuyaniyên rayedarên Tirkiyê jî û ragihand ku rayedar dibêjin, 'eger em jenosîda li ser xelkê sûryanî û ermeniyan hatiye kirin qebûl bikin ew ê doza tazmînatan bikin.' Çelik her wiha eşkere kir ku ew doza tazmînatan nakin. Li hember xwîna xwe doza xwînê nakin û mebesta wan ne pere ye û ew ji rayedaran samîmîbûn û duristbûnê dixwazin. Çelik her wiha da zanîn ku bi pêkhatina tevkujiyê re mal û erdên wan dêrên wan hatin şewitandin û eger rojeke dewletê ew gundên wan ê hatine şewitandin îadeyî wan bikira bi awayekî çêker nêzîkî wan bibûya ew ê dilê wan rihet biba. Çelik axaftina xwe domand: "Dewlet her dem dibêjê ku '1915'an were qebûlkirin ew ê tazmînatê bixwazin,'em bi nêzîkatiyek feodal nêzikî vî karî nabin. Em li hember xwîna me ya rijiya ye em xwînê naxwazin. Lêbelê lazime em wê samîmiyetê bibînin. Bi sedan dêr û manastirên me yen ku hatine xera kirin, şewitandin û hatine wêrane kirin hene eger bi awayekî sembolîk jî be dewlet wan restore bike û wana bide weqfên sûryani yan wê demê ez ê karibim bibêjim dewlet samîmî nêzîkî meselêyê dibe. Ez dizanim ku li gundan erdên ku di destê wandene yên bapîrên min in. Ez tazmînatê naxwazim, pêdiviya min bi wî erdî tuneye. "


Tuma Çelik


Aynur Özge


SalSîmon Polî

### "Dêr û manastir kirin mizgeft"

Lê hêla din gellek dêr û manastirên xelkên ermenî û sûryanî jî ji hêla dewleta Tirkiyê ve weke mizgeft hatin restore kirin û guhertin di wan de hatin kirin. Dêr û manastirên xelkê ermenî û sûryanî yên nehatin guhertin ji hêla Tapû Kadastroya dewletê ve hatin firotin û weke kargeh hatin bikaranînin. Çelik bal kişand ser rûxandin û wêrankirina dêr û mizgeftên sûryaniyan jî û da zanîn ku xelkê sûryanî ji ber vê yekê aciz in û nabe ku dêr weke mizgeft bêne guhertin û dêrên xelkê sûryanî bi darê zorê ji wan hatine stendin û pedîviya xelkê Misilman jî bi dêrên sûryaniyan tûneye guhertina dêran polîtikayeke dewletê ye.

### "Li Cizîrê rê li ber komkujiyê girt"

Rêvebirê Komîteya Komîteya Sayfo 100 SalSîmon Polî yê li Konfederesayona Komeleyên Sûryanî de di gireva birçîbûnê de bû ji BasNûçeyê re axivî û eşkere kir ku mebesta wan a çalakiyên îsal ew ê ku dewleta Tirkiyê komkijiyê nas bike û înkarê bi dawî bike.

Her wiha Polî da zanîn ku feraseta dewleta yekparêzî xeternake û eger desthilatdariya siyasî ya niha înkarê bidomîne û bi rastiyan re rû bir û nemîne ew ê komkujiyên din jî pêk werin û ew niha dibînin ku li ser xelkê kurd jî komkujî tê kirin. Polî dest nîşan kir ku greva wan a birçûbûnê bi tenê ne ji bo xelkê sûryanî bi tenêye daxwaze wan ew e aramî û aştî li herêmê pêk were û ew careke din jenosîd li herêmê pêk neye.

**Qetliyama suryaniyan ku her tim di bin siya qetliyama ermeniyan de maye pir nehatiye zanîn, ragihandin û li ser lekolîn nehatine kirin. Raya giştî û cîhan ji vê pir hayidar nebûye. Lê li gor lêkolîn û xebatên ku li ser qetliyamê hatine kirin, di encama bûyerê de di navbera 270 hezar û 300 hezarî de welatî hatine kuştin.**

### "Proseya çareseriyê bo me giring e"

Polî, her wiha veger û daxwaza xelkê sûryanî ya vegera cih û warên xwe jî bi bîr xist û ragihand ku zêdeyî 4 sala ye li Bakurê Kurdistanê proseya çareseriyê heye û bi wê proseyê re hêviyên aştiyê bi xelkê re çêbûne û xelkê sûryanî yên li diaaporayê jî dixwazin vegerin welatê xwe û ew jî piştgiriyê didin proseya çareseriyê. Polî da zanin ku di salên 90'î de gellek gundên wan jî hatin şewitandin û xelkê sûryanî yên ji ber komkijiyê filitîbûn jî di wê demê ji welêt derrketin û çûn sirgûnê. Polî da zanîn ku hin malbatên sûryanî vegeriya ne û ew hêvî dikin ku bi encamên proseya çareseriyê re hemû xelkê sûryanî bên û li welêt bi cih bibin. Polî wiha berdewam kir: "Sedemên ku gel çû dîasporaye hebûn. Bi jenosîdê re gelê me belav bûn. Piştî salên 70'yî koçberiya me ya Evrupaye zêde bû ev di salên 90'de jî berdewam kir. Gundên me jî hatin sûtandin. Ew yek ne bi dile me bû. Em bê dil ji welatên xwe derketin û koçber bûn. Anha ji bona vergerê hinek hêviyên me hene û hinek ji me jî vegeriyane. Ez baş hejmara wan nizanim. Gundên ku hîn nûh tê de xanî tên çêkirin hene. Ez dikarim bêjim tesîra proseya çareseriye li ser vegera xelkê me jî heye. Proseya çareseriyê ji bo vegera xelkê me jî bû hêviyek."

### "Dewlet dagirker e"

Di berdewamiya axaftina xwe de Sîmon Polî da eşkere kir ku dewleta Tirkiyê ya li ser mîrata osmanî rûnişt piştî jenosîda mirovên dest bi jenosîda çand kulturê kiriye û mal û milkên wan jî dagir kiriye. Polî ragihand ku dewetê hemû tiştê wan ji wan stendiye û hinek eşîrên kurd jî tevkariyê bi dewletê re dikin û erd û zeviyên xelkê dixwin û nadin wan. Polî da zanîn ku dixwazin kêşeyên xwe bi demokrasiyê ve çareeser bikin û naxwazin ew û xelkên herêmê dilê hevdû bihêlin û divê malên wan bên dayîn. Polî behsa kêşeya zeviyên Dêra Mor Gabriel jî kir û eşkere kir ku herçend tapûya derê hebe jî dewletê erdê derê dagir kiriye û daye gencîneya dewletê û weke yê xwe dibîne û dewlet dagirkeriya xwe li ser wan didomîne.

### "Emê doza mafên xwe bikin"

Kordînatora Navenda Jinên Sûryanî (SURKADİM) Aynur Özge jî da zanîn ku heta siyasetmedarên kurd guhê xwe bigrin û perdeyan bidin ber çavên xwe ew ê komkijiyê nebînin û eger ewe komkijiyê nebînin jî ne mimkûne li Tirkiyê aştî pêk were û xelkên cihêreng bi hevre bijîn. Özge mebesta çalakiyên xelkên sûryanî yên li Tirkiyê û cihanê jî eşkere kir û wiha got: "Heya ku Tirkiye vê komkûjiye qabûl neke aştî çênabe. Heviya me ji Tirkiye ew ê ku bila lêkolîna bike, bila arşîvan nerûxe,çi kirine çi nekirine bila derkeve holê. Di Peymana Lozanê de ji bona gelên me tu hêq tuneye. Em dixwazin mafên me yên rewa bikevin destûran û rê li ber demokrasiyê vebe. Recep Tayyip Erdoğan çend sal edesthilatdare rojekê devê wîpeyva sûryani derneketiye. hemu cîhane re dibejin ku emê tûcar denge xwe kêm nekin, her tim em ê behsa mafên xwe bikin.

### "Bi kurdan re yekîtî heye"

Di berdewamiya axaftina xwe de Özge nûnertiya xelkê sûryanî a di Parlementoya Herêma Kurdistanê jî de bi bîr xist û da zanîn ku Herêma Kurdistanê di gel 5 parlemenan di wezaretê de kontenjana wezîrekî jî daye wan û ew yek jî wan gellekî kêfxweş dike û baweriya wan bi demkrasiya Herêma Kurdistanê heye. Özge eşkere jî kir ku ew li Bakurê Kurdistanê jî piştgiriyê didin HDP'ê û ew hêvî dikin ku HDP bendê derbas bike û bikeve meclîs e. Özge hevkarî û yekgirtina xelkê sûryanî û kurd a li Rojava jî bi bîr xist û amaje bi wê yekê jî kir ku eger di serdema komkijiyê de xelkê kurd weke niha bi rêxistin bûya ew ê destûra dewleta osmanî neda kul i hember xelkên ermenî û sûryanî tevkujî bê kirin û ew ê kurdan rê li ber tevkijiyê bigirta. Özge wiha berdewam kir:" Şoreşa Rojava şoreşek e mezin e. Em ji bo Tirkiyê jî vê dixwazin. Tiştê ku me xeyal dikir xelkê Rojava pêk anînin. Li Xabûr êrîşê gundên sûryaniyan kirin Di van gundan de hinek sûryanî hat dîl kirin. 6 kes ji wan şehîd bûn.Kurdên li Cizîrê alîkarî dan xelkê sûryanî û li hember DAIŞ'ê şer kirin.

### "Dewletên komkujiyê nas dikin"

Özge dest nîşan kir ku, Hollanda, Avusturya û Ermenistanê heta niha komkuji sûryaniyan a bi navê Sayfo naskirine û ew nasîna komkujiyê jî dibe sedem ku îmaja Tirkiyê xirab bibe û rê li ber pêşketina Tirkiyê digre. Her wiha Özge daxuyand ku ji ew rê li ber asîmilasyonê li ser xelkê sûryanî bigrin wan li Stenbolê dibistanek jî vekiriye û derfetên wan tunene ku ew wê dibistanê li ser piyan bihêlin lewre dibistan taybet e û hemû pedîviyên wê ew dabîn dikin dewlet alîkariyê bi wan re nake û baca ku ji wan distîne li wan xerc nake û gendeliyê dike.

Hewlêr-Washington

# Rojev dahatûya Iraqê û operasyona Musilê ye

Serokê Rêveberiya Herêma Kurdistanê (RHK) Mesûd Barzanî li ser vexwendina Washîngtonê di rojên pêş de serdana Emerîka'yê dike. Te gotin ku bi serdana Barzanî, ragêşiya li ser têkiliyên Hewlêr û Washingtonê ya ku bi awayekî nexuyayî didome bi dawî bibe û di navbera herdû peytexten de rûpeleke nû bê vekirin. Çavlirê ye ku Barzanî nerazîbûna xwe ya di derheqê polîtîkayên Emerîka'yê ku Iraqê weke esas digirin bîne ziman û bo ku Qesra Spî di derbarê serxwebûna Kurdistanê û nêzikahiya kurdan a têkildarî dahatuya Iraqê de bi zelalî bide famkirin.

Wek tê zanîn sala çûyî çavlirê bû ku Barzanî serdana Emerîka'yê bike lê ji berk u Qesra spî daxwaza wî ya derxistina YNK û PDK'yê di lîsteya terorî de qebûl nekiribû û li gel vexwendina Washîngtonê jî Barzanî neçûbû Emerîka'yê. Piştî ku di demeke nêz de herdû partiyên kurd ji nava lîsteya terorîzmê ya DYA'yê hat derxistin nêzikahiya RHK'ê jî guhêrî û têkiliyên di navbera herdû aliyan de careke din ber bi baştirînbûnê ve çûn. Bi boneya geşedanên têkildarî mijarê serdana Barzanî ya li gel Qesra Spî careke din hat rojevê û vexwendnameya DYA'yê vêcarê bi erênî hat bersivandin. Li gorî vê jî her çiqas ku dîroka serdanê ne zelal be jî di demeke nêz de Barzanî bi şandeyeke kurd ve diçe DYA'yê.

Berpirsê Tekiliyên Derve yê RHK'yê Felah Mustafa di derbarê serdanê de agahî dan diyar kir ku dîroka serdanê hatiye diyarkirin lê ji ber hin tiştan ew nayê ragihandin lê di demeke pir nêz de Serokê RHK'ê diçe Qesra Sipî û wê di çend rojan de dîroka serdanê jî bê eşkerekirin. Mustafa herwekî din da zanîn ku ewê di serdanê de mijara tekiliyên Bexda-Hewlêr, Hewlêr-Washînton û Washîngton-Bexda'yê jî dê bên rojevê û wê şandeya Kurdistanê bo ku di têkiliyên bi Bexda'yê re Hewlêr li ber çavan bê girtin hin mijar bêne şirovekirin.

Di vê navberê de Barzanî ku hevdîtina xwe ya dawî ya bi Barack Obama re di Gulana 2012'an de pêk anîbû, di serdana niha de dê careke din bi Obama re li hev bicive. Xeynî Obama dê Barzanî bi Cîgirê Serokê DYA'yê Joe Biden re jî li Qesra Sipî civînekê pêk bîne. Cîgirê Wezîrê Karên Derve yê DYA'yê Breet McGurk jî di derbarê serdana Barzanî de agahî dan çapemeniyê û ragihand ku haziriyên bo serdana Barzanî bi berfirehî didomin û wê serdan di demeke kin de pêk were.

Li aliyê din balkêş e ji ber ku serdana Barzanî piştî serdana Serokwezîrê Iraqê Haydar Abadî bi demekê kurt pêk tê. Li bendê ye ku di hevdîtina Obama û Barzanî de dahatuya Iraq û Kurdistanê, operasyona mezin a ji bo Musilê û têkoşîna ku dê li dijî



DAIŞ'ê bê dayîn bê muzakerekirin û hin biryarên têkildarî rewşa Rojhilata Navîn ên girîng bêne stendin.

**"RHK teminata ewlehiya gerdûnî ye"**

Pisporê Têkiliyên Navdewletî û Mamosteyê Zankoya Selahaddîn Dr. Musa Kaval di derheqê serdana Barzanî ya sala çûyî ku ji bo dernexistina PDK û YNK'yê di nava lîsteya terorîzmê ya Emerîka'yê de pêk nehatî û li ser serdana kû wê piştî bicîhkirina daxwaza Kurdistanê ya ji aliyê Emerîka'yê ve pêk were nêrînên xwe bi rojnameya me re parvekir û da zanîn ku şerê ku Pêşmerge li dijî DAİş'ê dimeşîne dibe sedem ku gelek nêzikahiyê li gel RHK'ê biguhirin.

Kaval anî ziman ku têkoşîna ku Pêşmerge dimeşîne dibe wesîle ku Kurdistan li gel hêzên mezin ên ku dixwazin berjewendiyên xwe yên li Rojhilata Navîn biparêzin bibe aktoreke sereke û wiha pê de çû; "Hêzên mezin û têkiliyên navdewletî êdî neçar in ku Kurdistanê weke şîrekekî qerase li ber çavan bigirin û li herêmê bi Kurdistanê bişêwirin. Kurdistan li hemberî hêzeke wek DAIŞ'ê ku ewlehiya gerdûnî dide ber gefan şer dike û xizmeta ewlehiya gerdûnî dike. Ew jî dibe sedem ku RHK li gel DYA'yê bêhtir girîngtir bibe û gotinên Kurdistanê li ber çavan bên bêne girtin. Egera ku komên radîkal li Rojhalata Navîn deh salên din jî hebûna xwe ya niha biparêzin û gefan li ewlehiya gerdûnî bixwin. Li gel vê rastiyê RHK welatê tekane ye ku li Rojhilata Navîn xwedî îstiqrar û ewlehiyê ye. Wek tê zanîn beriya emeke kin Serokwezîrê Iraqê bo DYA'yê hat vexwendin û hevdîtin di navbera wî û Obama de pêk hat. Balkêş e ku hema piştî Abadî vêcarê birêz Barzanî hatiye vexwendin. Ew dide xuyakirin ku êdî hatiye famkirin da ku li Iraqê tenê ne Bexda ye û bi qasî Bexdayê niha Hewlêr jî bûye xwedî gotin û biryar stendinê. Ew pêveçûneke zor girîng e û divê ew rastî weke serfiraziyeke Kurdistanê jî bê zanîn û qebûlkirin. Tekane aktöre ku di mijarên weke ragêxiya di navbera şiî û sunneyan de, şerê bi DAIŞ'ê re û mijarên din ên ku Rojhilata Navî eleqedar dikin de Kurdistan xwedî politikaya herî pozitîf û nermtir e. Ew jî encameke wiha berz dike da ku hemû hêzên navdewletî û dewletên mezin ên ku li Rojhilata Navîn xwedî maf û berjewendiyan in Kurdistanê li ber çavan bigirin û pişt re gavan biavêjin û Kurdistanê wek muxatap qebûl bikin.

**Barzanî ku hevdîtina xwe ya dawî ya bi Barack Obama re di Gulana 2012'an de pêk anîbû, di serdana niha de dê careke din bi Obama re li hev bicive. Xeynî Obama dê Barzanî bi Cîgirê Serokê DYA'yê Joe Biden re jî li Qesra Sipî civînekê pêk bîne.**

Siyaseta Kurdistan ji bo destûra nû civiya Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî, bi mebesta li gel destûra nû û dema erka serokatiya herêmê, mijarên wek; Şerê Pêşmerge yê li dij DAIŞ'ê dimeşîne, Operasyona Mûsilê, Serdana wî ya Amerikayê û mijarên din ên ku di rojeva Kurdistanê de ne, nêrînên wan wergire, li Ofîsa serokatiyê ya li Pîrmanê bi nûnerên partiyên siyasî yên Kurdistan û cıvata tirkmen û mesîhiyan re civiya û ji nûneran xwest ku ji bo pêvajoya amadekariya destûra nû û dema erka serokatiyê lez bikin û xwe ji daxuyaniyên ku dikarin peşkê li geşedana wan bide xwe dûr bikin. Barzanî destnîşan kir ku ev destûr ji bo welat û gel tê amadekirin û ji ber vê yekê jî divê bi giyanekî niştimanî bê nivîsandin. Barzani, di derbarê dema erka serokatiyê de jî diyar kir ku ev mijarek e ku aliyên siyasî çareser bikin û ji alîyan xwest kutafilê vê mijarê çareser bikin. Di peyama di derbarê naveroka vê civîna ku nûnerên PDK, YNK, Goran, Yekgirtû, Komel, Partiya Sosyalîst a Kurdistan, Tevgera Îslamî ya Kurdistan, Partiya Komunîst a Kurdistan, Zehmetkêşan û nûnerên cıvata Tirkmen û Mesîhî yên Parlamena Kurdistan beşdar bûn de nûneran desnîşan kirin ku di demeke wiha hestiyar de divê hêza Pêşmerge ku barê herî giran ê vê pêvajoyê hilgirtiye ser xwe bi her awayî bê piştgîrkirin û yekîtiya siyasî bê pêkanîn. Di vê peyama ku ji ber alîkariya çekdarî ya RHK kirine, ji Hêzên Hevpeyman û dewletên dost re spasî hatiye pêşkêşkirin de, her wiha hatiye destnîşankirin ku tekane rêbaza çareseriya pirsgirêkên di navbera Hewlêr û Bexdayê de, rêbaza diyalogê ye, meşandina pêwendiyên li ser hêmanên dostî û wekhevî yên bi welatên cîran re wê sûdê li RHK jî bike û di encama meşandina van pêwendiyan de wê herêm aramtir bibe. Di peyama ku pêwîstiya di bin banê Wezareta Pêşmerge de yekdestkirina hêzên Pêşmerge hatiye destnîşankirin de her wiha pêwîstiya di çarçoveya daxwazên hevpar ên aliyên siyasî de çareserkirina şêweyê hilbijartina serokê herêmê û destûra nû, di derbarê mijarên wiha de bi hendazeyî helwestîna berpirsyar û kesên siyasî û alîkarîkirina endamên Lijneya Amadekar a Destûra Nû jî grîng hatiye nirxandin

Seroka Lijneya Destûrê ya Parlamena Kurdistanê Vala Ferîd jî diyar kir ku amadekariyên Destûra nû piştî ku ew pêşnûmayasaya ku qonaxên damezirandina lijneya amadekar, nivîsandin û pêşkêşkirina referandumê ya destûrê diyar dike ku ji alî Parlamena Kurdistan ve hatibû pesendkirin, biçe ber destê Serokê Herêma Kurdistanê û ji alî wî ve jî bê pesenkirin, wê wek fermî destpê bike. Ferîd got ku gihaneka yekem a vê pêvajoyê, di navbera 30 rojan de damezirandina Lijneya Amadekar a Destûra Nû ku ji endamên parlamenê, nûnerên beşên civakê û pisporan pêk tê ye.Li ser mijarê Ferid ji BasNûçeyê re axivî û eşkere kir ku hemû partiyên siyasî dezgehên sivîl di w fikrê dene ku hewcedarî bi deztûreke nû heye lêbelê li ser naveroka destûrê mûmkûne boçûnên ciyawaz rû bidin. Di berdewamiya axaftina xwe de Ferid anî ziman ku piştî mehekê ew ê komîsyona amadekar bê avakirin û ew ê ji heta sê mehan dest bi karê xwe bike. Ferid li hêla din da zanîn ku eger di naveroka destûrê de li hevnekirin û kêşeyên din derkevin ew ê komîsyona amadekar sê meh dem bixwaze. Ferid li ser proseyê rawestiya û wiha got:" Ev bi tenê egerî ne. Hemû partiyên siyasî, saziyên sivîl û rêxistinên civakî di heman fikrê de ne û ew jî dixwazin ku dstûreke nû bê çêkirin. Ev jî dide eşkere kirin ku ew ê destûr li gor dema kut ê tehmîn kirin bê amadekirin û pesend kirin. Barzani: Hiçbir güç bağımsızlığımıza engel olamaz Her çend destûreke nû, maweya erka serokatiyê û şer di rojevê jî debe Serokê Herêma Kurdistnaê Mesud Barzanî li ser serbxwebûna Kurdistanê, Rojava, şerê li hember DAIŞ'ê rawestiya û ji Radyoya Dengê Amerîka ya Beşa Farisî re axivî. Serokê Herêma Kurdistanê eşkere kir ku ew di serbixwebûna Kurdistanê de bi israr in. Her wiha Barzanî destnîşan kir ew ê tu kes nikaribe li hember serxwebûna Kurdistanê bibe asteng û ew ê hewlên serxwebûnê berdewam bikin û ew ê di dawiyê Kurdistan serbixwe be. Barzanî anî ziman ku ew naxwazin bi şer û pevçûnan bi diyalogê meseleya serxwbûnê çareser bikin. Barzanî wiha berdewam kir: "Ew ê Kurdistan serbixwebûna xwe ragihîne. Lêbelê em naxwazin vê bi şer û pevçûnan bi diyalogê re çareser bikin." Di berdewamiya axaftina xwe de Barzanî li ser astengbûna Îranê ya li hember serbixwebûna Kurdistanê û peywendiyên Îran û Iraqê jî rawestiya û da zanîn ku ew ê Îran beşdarî operasyna Mûsilê nebe û ew dixwazin bi dewletên cîran re peywendiyên baş saz bikin û ji bo kêşeyên nava Iraqê jî divê Îran alîkariyê bide Îranê.Her wiha Barzanî destnîşan kir ku ew ne hêvînakin ku Tirkiye jî beşdarî operasyona Mûsilê bibe lê mimkûne ku alîkariya çekdarî bide operasyonê. Barzanî li ser hatina Îbadî ya Hewlêrê jî rawestiya û da zanîn ku serdana wan baş derbasbûye û kêşeyên ji 2003'yan dest pê kirine ne mûmkûne bi hevdîtinekê re bi dawî bibin û ji bo çareseriya kêşeyan pediviya wan b demê heye. Partiyên Başûr ew ê bi PKK'ê re bicivin Serokê Herêma Kurdistanê Mesud Barzanî bi partiyên siyasî yên Kurdistanî, nûnerên neteweyî û olî re civiya. Hat zanîn ku nûnerên partiyan pêşniyara civîneke bi nûnerên PKK'ê jî re pêşkeşî Mesûd Barzanî kirine û Mesûd Barzanî pêşniyara partiyên siyasî êrênî nirxandiye. Hat zanîn ku ew pêşniyar ji ber daxuyaniya rêvebirê KCK'ê Duran Kalkan ê li ser rêveberiya herêmê û nîqaşên piştî wê hatiye kirin û partî beriya ku kêşe mezintir bibe dixwazin çareser bikin. Heta niha di derbarê cih û dema civînê de tu agahî nehatine dayîn.

**Pêşmerge beşdarî operasyona Musilê dibe**

Fermandarekî Pêşmerge diyarkir ku ji bo beşdarîkirina di proseya azadkirina Mûsilê de, Pêşmerge li welatekî rojava perwerde wergirtine.Wî fermandarê Pêşmerge, ku nexwestiye navê wî aşkere bibe, ji BasNewsê re axivî û wiha got; "Di Adara îsal de bêhtir ji 70 efserên Pêşmerge bi awayekî nihênî çûbûn Ukrayna, ji bo wergirtina perwerdeya taybet bi şerê kolanan û bikar anîna hejmarek ji çekên curbicur."

Bi got wî fermandarî, xula perwerdekirina Pêşmergeyan li Ukrayna 25 rojan dirêj kiribû "mebest jê jî beşdarîkirina Pêşmerge di şerê azadkirina Mûsilê de ye. Perwerde jî taybet bû bi şerê kolan bi kolan, xweparastin ji mayînan, bikarnîna çend curên Doşke yên fransî, pûçkirina mayînên çandî û bikaranîn çendîn teknîkên şerkirinê, ku ji bo Pêşmergeyan tiştek nû bû."

**BKS ji vegera Pêşmerge re bû asteng**

Ji ber hebûna "kêmbûnekê" di çekên ku Pêşmergeyan bi xwe re biribûn Kobanê de, Tirkiyê rê neda wan ku vegerin Herêma Kurdistanê. Ji aliyê RHK'ê ve biryar hatibû girtin da ku pêşmerge yên ku di roja 25ê Nîsanê çûbun Kobanê vegerin Hewlêrê. Lê belê ji ber ku çekeke BKS ji yên ku Pêmşmerge bi xwe re birûbi Kobanê wenda bûye, Tirkiye rê neda ku karwana Pêşmerge derbas bibe.

Li gor zanyariyan, dema vegera karwana çarem a Pêşmergeyan ji Kobanê, çekek ji curê BKS ligel xwe vegerandibûn Herêma Kurdistanê, lê niha Tirkiyê rê nade grûpa 5 emîn a Pêşmergeyan da ku bi rêya axa wê ji Kobanê vegere, herwiha Tirkiye daxwaz dike ku çarenivîsa wê BKS yê jî bê diyarkirin. Çavkaniyekê ji nava Pêşmergeyên Kurdistanê li Kobanê ji BasNewsê re ragihand ku "Niha wê fermandariyê wêneyeke wê çekê û hejmara wê kişandine û dê bo Tirkiyê bişîne. Lê berpirsên Tirkiyê bawerî bi wê yekê ne anîne, lewma dê Wezareta Pêşmerge nivîsekê ji bo çareserkirina wê arîşeyê bişîne Tirkiyê."

Li ser iddiaya mijarê Sekreterê Giştî yê Wezareta Pêşmerge Cebar Yawer jî ragihand ku ti arîşeyeke wan ligel Tirkiyê nîne û ew ne amade ye ku tu zanyariyeke din derbarê vê pirsê de bide.



## Barzanî:
# Wê êzdî çarenûsa xwe diyar bikin

Siwar Bedirxan

Serokê Herêma Kurdistanê (RHK) Mesûd Barzanî di kombûna bi rûsipî, pêşengên olî û Fermandarên Pêşmerge yên ezdi de daxwazên ezdiyan guhdar kir û ji bo bersivandina pêdiviyên wan, xebatên ku hatine kirin û yên ku wê bene kirin de wan agahdar kir.

**'Emê alîgirên DAIŞ'ê efû nekin'**

Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî, piştî civîna ku li dû karesata li Şengalê pêk hat li Duhokê li gel rûsipî û pêşengên olî yên ezdiyan careke din li gel wan civiya û daxwasiyên ezdiyan guhdarî kirin. Di civînê de piştî ku nûnerên ezdiyan daxwaza jinûve avabûn û wîlawekbûna Şengalê û hin daxwazên "din guhdarî kir li gel wan axaftinekê kir. Barzanî di destpêka axaftina xwe de ji ber dubare civîna li gel nûnerên ezdiyan kêfxweşiya xwe anî ziman û ragihand ku li gor civîna li Duhokê ya ku di destpêka karesata Şengalê pêk anîbûn, di vê civînê de hem ew hem jî nûnerên ezdiyan bi hêvîtirin û got: "Ji ber vê hêvîdariya me hemûyan, ez pir kêfxweş im" Barzani di axaftina xwe de derbirî ku karesata ku piştî dagirkirina Şengalê pêk hatiye, perçeyek ji pêvajoya qirkirina kurdan e û destnîşan kir ku herî zêde ezdî ji vê pêvajoya qirkirinê ziyanê dîtine. Barzanî got: "Ezdî hem ji ber ku kurd bûn û hem ji ber ku ji ola ezdîtiyê bûn, dû caran hatin qetilkirin. Lê belê hem xweragirî û tekoşîna ezdiyan û hem ji ya tevahiya gelê kurd ev daxwazên xêrnexwaz pûç derxistine û ew ê her pûç derkevin"

Barzani anî ziman ku dijmin û neyarên nîjadperest xwestine ku ji vê karesata hatiye serê ezdiyan weke fersendekê sûd wergirin û di nav kurdan de tovên dijminahiyê biçînin, lê belê bi ser neketine û ji ber vê karesata bi serê ezdyan hatiye, belkî ji wan bêtir jî dil bi kul û xemgîn bûye. Barzanî got: "Ya em ê hesabê van tawanan ji tawanbaran bipirsin an jî ezê serê xwe bidim"

**'Çûna serê Çiyayê Şengalê dîrokî bû'**

Barzanî, piştî şikestina dorpêça Çiyayê Şengalê çûna xwe ya serê çiyayê Şengalê wek çûneke dîrokî nirxand û axaftina xwe wiha domand: "Li gor qeneeta min çûna serê Çiyayê Şengalê dîrokî bû. Ez çûme serê Çiyayê Şengalê û min deverê çavdêrî kir. Hêvîdar im dijmin tu caran serê wî çiyayî nebûne. Şikir ji xwedê ku îro bi azadî û aramî û bi saya gellekî hevpar, zimanekî hevpar û erdnîgariyeke hevpar me hemû rêyên girtî vekirin. Bi saya gellek canfîdayên ku şehîd bûne ev destkeftî hatin bi destxistin. Li ba dilê min a herî grîng ew ku ku hemû gelê kurd û hemû dinya li pişt we bûn û ew keramet û mirovperweriya ku di mercên dijwar de jî we dest jê berneda. Çimku Kerameta we kerameta gelê kurd e, şerefa we şerefa gelê kurd e. Şikir ku ewên ku zilm û bêbextî xedarî li we kirin, îro xwe dihavêjin bin lingên zarokekî ezdî da ku belkî wî efû bike. Ev nisîbek e ku xweda kirî ye nesîbê me"

**'Ji bo ezdiyan wê xebatên me dom bikin'**

Barzani di berdewama axaftina xwe de anî ziman ku di kêliya karesatê de, wî di dilê xwe de hesta temambûna ezdiyan his kirî ye û temambûna ezdiyan tê wateya temambûna kurdan, wî di dîrokê de jî karesatên wiha kêm têne dîtin û ji ber tehemul û xweragiriya ezdiyan spasiyên xwe pêşkêş kir. Barzanî da zanîn ku ji bo ezdiyan bernameya wan temam nebûye û ew ê ji bo ezdiyan pir tiştan bikin, ji bo Şengal, Şêxan û hemû deverên ezdiyan xebatên wan bidomin. Barzanî axaftina xwe wiha domand: "Rast e, we pir êş û azar kêşa, lê belê dahata we azadtir e, hun ê serkeftîtir bin. Di derbarê bergirî û parastinê de bernameyeke me ku temam nebûye heye. Em li bendê ne ku bernameyeke mezintir bi encam bibe. Ji bo jinûve avadankirina bajar û navçeyên ezdiyan jî bernameyeke me heye. Ji bo hun di rewşên bi derfettir û azadtir de bijîn em ji hemû dinyayê daxwaza bêtir alîkariyê dikin. Çumku ew feqîrî û xizanî û bêderfetiya ku min dît pir giran bû. Di rastî de ev axa ezdiyan axeke bi xêr û bereket e, lê belê dijminan nehiştin ku ezdî ji vê bereketê sûd wergirin. Divê em plansaziyên wisa çêbikin ku herêm ji nû ve şên bibe, ji nû ve ava bibe, ezdî ji axa xwe nebin û li ser axa xwe ya bi bereket jiyana xwe bidomînin"

**'Rejîma Baas gelan ji hev qewirand'**

Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzani di axaftina xwe de qala tawanên dema rejîma baasê jî kir û diyar kir ku baasê di nav gelan de bendan peyda kirî ye lê ji bo ku wan bendan birûxînin ew her helwestiyan e. Barzanî, da zanîn ku ew gelê ereb wek birayê xwe dibînin û belê ew ê qewirandina kurdan jî qebûl nekin û got: "Bi raya min ezdî kurdên resen in û ji ber vê yekê nabe ku em çavên xwe li wan bigirin û ji bo mexdûriyeta wan bê çareserkirin em ê kar û xebatan berztir bikin. Piştî ku me rewşa dawî ya herêma ezdiyan dîtin, me biryar da ku em bi bi hendazeyî nêzîkî mijarê bibin, ji bo pêşgetin û geşedariya herêmê em ê dest bihavêjin Şengalê, ji bo vê yekê me bernameyekê amade kirî ye lê belê ev bernameya me bi encam nebûye û wê dom bike"

**'Wê ezdî xwe bi rê ve bibin'**

Barzanî, destnîşan kir ku ji ber ku egalê didine serê xwe baasiyan hewl daye ku ezdiyan wek ereb nîşan bidin û ew bikin ereb, lê belê ji alî din ve jî wan ji cih û warên wan diqewirandin. Barzani diyar kir ku di biryarên derbarê ezdiyan de tu tişt ji wan nedihate pirsîn û wiha dom kir: "Di mijarên di derbarê ezdiyan de êdî ew bixwe biryardar in û ew ê çarenûsa xwe binivisînin. Ne tenê ezdî, hemû pêkhateyên olî û mezhebî yên Kurdistanê jî ew ê birayarên xwe bidin û li gor bir û bawerî û taybetiyên xwe yên jiyanê bi serbestî bijîn. Tenê ew kesên ku îxanet û hevkariya dijminan dikin wê ji vî mafî bêpar bin. Ew kesên hanê wê li Kurdistanê bi serbestî nikaribin bijîn"

**'Li Kurdistanê emê rê nedin Heşdî Şabî'**

Di dawiya axaftina xwe de di derbarê çalakiyên Heşdî Şabî yên li Kurdistanê de jî Barzanî diyar kir ku di navbera wan û Heşdî Şabî de tu pirsgirêk tune ne, bi hev re li dij DAIŞ'ê şer dikin û ew Heşdî Şabî wek birayên xwe dibînin lê belê ew ê destûrê nedin ku Heşdî Şabî li Kurdistanê bikeve nav hin hewldanan. Barzani got: "Herêma Kurdistanê bi avahiya xwe ya dezgehî û nîzama xwe ya asayîş û bergiriyê xwedî sazûmaneke bi rêk û pêk e û pêdiviya wê bi tu hêzên çekdarî yên ji derveyî herêmê nîne. Ji ber vê yekê m ê nehêlin ku hêzeke din li Herêma Kurdistanê bikebe nav hewldanan û çalakiyan pêk bîne. Heşdî Şabî, li Kurdistanê dest bi hin çalakiyan kir. Lê belê em dixwazin ku vê yekê têbigihîjin ku Li Kurdistanê em ê rê nedin çalakiyên wan û eger bi israr van çalakiyan berdewam bikin wê gavê em ê jî bergirî û bertekên tûndtir şanî bidin"





# Serdana Barzanî û teraziya jepolîtîk a heremê

Mamend Roje



Serokê Herema Kurdistanê Mesûd Barzanî, bi banghêştek fermî seredana Amerîkayê dike. Barzanî piştî dîdara Obama – Ebadî, xişteya dîdarên xwe amade kiriye. Navbirî di civîna serokên partiyên siyasî yên kurd de nêrîna aliyên siyasî jî sitendiye. Di çenteyê wî çend dosyeyek li xwe digrin û çend sal in li benda vê dîdarê ye.

Analîstên baldar di wê baweriyê dane ku çenteyê Barzanî de vê carê ev dosya hene:

1. Pirsa operasyona Mûsilê
2. Stratejiya tinekirina DAİŞ'ê
3. Peywendiyên Hewlêr û Bexadyê
4. Pirsa rikberiyên jeopolîtîk yên herem
5. Hin mijarên nehênî

Heta niha analîst nizanin dosyayên nihênî yên çenteyê Barzanî de çine, lê ji niha ve hin nîşane hene ku şirovekaran li gor wan nêrînên xwe radigehînin.

**Di Operasyona Mûsilê de rola Herema Kurdistanê**

Piraniya analistan di wê baweriyê dane ku ajandayê yekem a dîdara Barzanî li Washingtonê, girêdayî stratejiya tinekirina DAİŞ'ê û pirsa rizgarkirina Mûsilê ye. Xûya ye ku piştî serdana Ebadî li Hewlêr û Washingtonê, bi awayeke fermî daxwaz kiriye ku hêzên Pêşmergeyên Kurdistanê jî piştevaniya Artêşa Îraqê bikin. Hemî aliyan dizanin ku ev operasyon bê beşdariya Pêşmerge ti encamek erênî nade.

Di vê pirsê de, nakokiyên kûr di navbera Şîî û Sûnniyan de hene. Nakokiyên Şîî û Sûnniyan têkelê nakokiyên heremê bûne û rehendek (dimension) heremî vergirtine. Ji ber vê Îran, Erebistan û Turkiye bi hûrkûrî çavdêriya meseleya Mûsilê dikin. Li vir dîplomasiyek nihênî di kêleka hewldanên saloxdarî ji bo pêşgirtin ji beşdariya hêzên îranî û "Heşd ül Şabî" li Mûsliê têne dîtin. Di vir de planeke Herema Kurdistanê jî heye û wisa dixûye ku Barzanî dixwaze vê pirsê li ser mêzên hemtayên xwe yên amerîkî deyne.

Li tenişt vê de, dixûye ku çend dosyayek din jî wê bên gengeşekirin, wek peywendiyên Hewlêr û Bexdayê ku heta niha gelek kêşeyên giring di navbera herdu aliyan de hene û ji dema Eyad Elawî heta Nûrî Malîkî ev pirsgirêk çareser nebûne. Niha Ebadî îradeyek nîşan dide ku van pirsan çareser bibin. Pirsgirêkên hilavîstî evin: Pirsa serweriya Herema Kurdistanê, pirsa bûdceyê, pirsa enerjî û çavkaniyên sirûştî, bûdceya Hêzên Pêşmerge û meseleya çekên stratejîk.

Di nav van pirsan de giringtirîn pirs pirsa çekên stratejîk e ku ji bo Hêzên Pêşmerge gelek giring in. Serbarî dengoyên cûrbecûr, heta niha Wezareta Pêşmerge ji Hevpeymanan çekên stratejîk vernegirtine. Ev jî bi rengek nerênî bandor li ser berikên cengê dike. Ji bilî hin doçkayên 20 mm yên frensî û fûzeyên Mîlan yên almanî, ti çekên giran negihîştine Pêşmerge. Sedema vê jî Bexda û Washington in ku bi fermî li dijî vê derdikevin. Ev di demek daye ku Pêşmerge li gor Destûra Îraqê hêzek fermî ye û qaşo "parçeyek ji menzûmeya berevaniya Îraqê ye".

Analîst di wê baweriyê dane ku ajandayê nihênî ya Barzanî pirsa çekên stratejîk in ku heta niha di nav boykota welatan de tê û diçe. Barzanî dixwaze vê pirsê bi hemtayên xwe yên amerîkî yekalî bike, ji ber ku Herema Kurdistanê mafê xwe yê destûrî heye ku çekên stratejîk verbigre wek; Tank, top, firokeyên cengî û helîkopteran. Bê guman bê van çekên stratejîk, pirsa beşdariya Pêşmerge li operasyona Mûsilê di nav mijekî tîr de dimîne!

**Pozberiya jeopolîtîkî: Teraziya heremê**

Piştî şerê Yemen û Operasyona Bahoza Xurt, havkêşeyên heremê ber bi rûyek din ve diçin. Amerîka di stratejiya xweyî nû de vê heremê berdaye û dixwaze ku welatên heremê bi xwe, xwe biparêzin. Ev stratejî di heremê de valatiyek hegemonîk a stratejîk li pey xwe hiştiye. Di çarcoveya vê stratejiyê de, Amerîka ji bo Operasyona Bahozê, ji Erebistanê re çirayê kesk vêxistiye. Li hember vêya Rusya di gava yekem de, ji zarê Putîn ragihandiye ku ew dixwaze fuzeyên S-300 bifroşe Îranê. Niha Putîn dixwaze di dema şerê Yemenê de, van fuzeyan bide Îranê! Ev fuze dikarin li gor radaran firokeyên cengî bihingêvin. Di kêleka vê pirsê de, Îran keştiyên cengî ber bi Kendava Edenê ve rewane kirine. Amerîka gefan li Tehranê dike û ji bo vê yekê, wan jî keştiyên xwe yê cengî dişîne Bab el Mendebê.

Ev teraziya hêzan di navbera hêzên Şîî û Sûnnî de her ku diçe zêdetir berfireh dibe. Ev yek jî di nav Îraqê de bi rengek ciddî kûr dibe. Hêzên milîs ên Şîî dixwazin di hemû heremên Sûnniyan de bi cih bibin. Stratejiya Îranê jî ev e ku ev hêzên Şîî hegemonya xwe % 100 li vî welatî biçespînin û demoxrafya yê biguhorînin. Ev yek li hesabê hêzên Sûnnî naye, lewma Sûnniyên Îraqê dixwazin bi alîkariya welatên Sûnnî yên wek: Erebistan, Tirkiye, Urdun û Herema Kurdistanê ev operasyon bête encamê. Ew naxwazin bûyerên Tikrîtê dubare bibin.

Barzanî pêştir di stratejiya xwe ya Îraqê de piştgirî daye Sûnniyên nermrû yên legal ji bo ku xwe rêkbixin. Ji ber vêya ew dixwze di dîdara xweyî Washingtonê de vê mijarê jî deyne ser maseyê. Barzanî wek Sûnniyan bi guman li hereketên Haşd ül Şabî û mîlîsên Şîî dinêre. Ji ber vê jî bi awayek net beşdariya Îraniyan û hêzên Şîî di operasyona Mûsilê de red dike. Di çarçoveya vê stratejiyê de Barzanî xwe amade dike li Washingtonê bi hemtayên xweyî Amerîkayî re bicive.

**Barzanî li Washingtonê, girêdayî stratejiya tinekirina DAİŞ'ê û pirsa rizgarkirina Mûsilê ye. Xûya ye ku piştî serdana Ebadî li Hewlêr û Washingtonê, bi awayeke fermî daxwaz kiriye ku hêzên Pêşmergeyên Kurdistanê jî piştevaniya Artêşa Îraqê bikin. Hemî aliyan dizanin ku ev operasyon bê beşdariya Pêşmerge ti encamek erênî nade.**

# Li Kobanê xetera birçîbûn û nexweşiyê

**Selah Qoserî**



Bi vegera şêniyê Kobanê ku ji ber şer koçî Bakur kiribû berdewamiya şer, mayînên bicîhkirî û kêmasiya derfetan wek cîhê arîşeyan bandora xwe xwe didomîne. Bo ku rê li ber nexweşiyên vegir bê girtin û mayînên ku DAIŞ'ê çandine bêne paqijkirin jî banga rayedaran a li gel cîhanê didome. Li hêla din bi zêdebûna gelheya nava bajêr jî kêmasiya ard û xwirekan dest pê kir. Her wiha ji ber termên endamên DAIŞ'ê gelek ajalên jardar jî li nava bajêr peyda bûne û xetereya mayînên çandî jî berdewam dike. Ji bo paqijkirina mayînan ji gelek welatan rêxistinên ku mayînan paqij dikin hatin nava bajêr û mayînan paqij dikin. Desteyên ku ji bo avakirina bajêr diçin nava bajêr jî, lêkolîn û raporên xwe pêşkêşî raya giştî ya navdewletî dikin. Konseya Meclîsa Parlementerên Ewrûpa jî bi bang li welatên endam kir û ji wan xwest ku alîkariyê bidin Kobanê.

Hat zanîn ku DAIŞ'a ku li Kobanê, Cizîr, Til Temir û Serêkaniyê hat feşkilandin vêcarê bajarê Hasekê ji xwe re kiriye armnanc û hewla êrîşan dide. Her wiha hat eşkere kirin ku hêzên kurd ji bo ku rê li ber wê hewldana DAIŞ'ê bigrin yekîneyên xwe yên Til Temir û Serêkaniyê ber bi herêmê ve şandine. Li hêla din bangawaziyên vekirina korîdora mirovî ya li gel Tirkiye'yê jî berdewam dike. Wek tê zanîn Tirkiye heta niha bi tenê destûra vegera xelkê koçber û serdana desteyên alîkariyê dide. Her wiha hat zanîn ku ji bo çareseriya krîza ENKS'ê û TEV-DEM'ê jî wê li Cenevre'yê jî civînek bê lidarxistin.

Gengeşiyên di derheqê ku bêşek ji Kobanê bibe muze jî dewam dikin. Her wiha hat zanîn ku ji bo xelkê bajêr neye mexdûrkirin ewê çend cihên asê weke mûzexane bên terxankirin. Li başûr û rojhilatê bajêr jî operasyonên li hember DAIŞ'ê berdewam dikin. Kampanyayên alîkariyê yên sazî û dezgehên Başûr û Bakurê Kurdistanê jî bê navber berdewam in. Bi peydabûna kêmasiya xwarin û xûrekan re jî Dezgeha Alîkariyê ya Barzanî 70 ton ard şand Kobanê. Yekîneya Pêşmergeyên asêyemîn a ku di dema şerê giran ê Kobanê de derbasî nava bajêr bibû jî ji bo vegerê li hêviya fermanê ye.



**"Rewşa 5 zarokan giran e"**

Hevserokê Sendîkaya Kedkarên Tendurustiyê yê Rihayê Reşad Doğanê ku li herêmê lêkolînên tendurustî dike da zanîn ku desteyên li nava bajêr hewl didin ku rê li ber nexweşiyên ku ji termên endamên DAIŞ'ê peyda dibin bigrin û lê hêla din jî li sê dibistanên ku zarok lê perwerde dibîn nexweşî zêde bûne û rewşa zarokan metirsîdar e. Doğan amaje bi wê yekê kir ku rêvebirên bajêr li ser girtina dibistanan bi gazinc in lewre cesteyê zarokan lawaz e û nexweşî gelekî zêde bûne. Doğan destnîşan kir ku divê demildest zarok bên dermankirin û daxuyand ku nexweşxaneya bajêr têrî dermankirina nexweşên nake û li bajêr nexweşxaneyeke din tê çêkirin û nexweşên giran jî li Sirûcê tên dermankirin

> **Desteyên ku ji bo avakirina bajêr diçin nava bajêr jî, lêkolîn û raporên xwe pêşkêşî raya giştî ya navdewletî dikin. Konseya Meclîsa Parlementerên Ewrûpa jî bi bang li welatên endam kir û ji wan xwest ku alîkariyê bidin Kobanê.**

**"Xelkê sivîl bi xetereyan re rû bi rû ye"**

Serokê Giştî yê komeleya alîkariyê DEST'ê M. Zeki Unutur jî bal kişand ser germahiya hewayê û da zanîn ku xelkê ku vegeriyaye bajêr bi mayîn, birçîtî û nexweşiyan re rû bi rû ye û ji ber nebûna kanalîzasyona bajêr jî li nava bajêr, mişk, mar û koremişk zêde bûne û ji ber wan ajalan li nava bajêr nexweşî zêde dibin. Unutur, bal kişand ser nexweşiyên vegir jî û wiha got: "Zêdebûna van ajalan bi xwe re gellek nexweşiyan jî tîne. Divê em rê li ber nexweşiyên vegir û metirsîdar bigrin. Lêbelê derfet kêm in."

**"Kêmasiya ard û xûrekan"**

Uutur li ser meseleya kêmasiya ard û xurikan jî ragihand ku divê bi lezgînî lêkolînên wan li nava bajêr kêmasiya ard û xûrekan heye û ambarên ard ên li gundan û nava bajêr vala bûne û tenûr êdî nanê kapekî dipêjin. Her wiha Unutur eşkere kir ku di dema kampanyayên xwe de û di danûstendinên bi komelêyên re nebûna ard, derman û xurekan radigihînin. Di berdewamiya axaftina xwe de Unutur bal kişand ser Dezgeha Alîkariyê ya Barzanî jî û da zanîn ku dezgehê ji bo avadaniya bajêr 500 hezar dolar terxan kiriye û niha jî, ji bajêr re ard dişîne.

**"Divê zarok bên dermankirin"**

Endamê Desteya Perwerdehiyê yê Kantona Kobanê Mihemed Xalid jî bal kişand ser rewşa zarokên nexweş ên li Kobanê û da zanîn ku ji ber qîrêjiya nava bajêr zarok nexweş dikevin û wan zarokên ku bi kînorê ketibûn derman kirine û ji bo ku nexweşî bi temamî bi dawî bibe divê nava bajêr bê dermankirin. Di berdewamiya axaftina xwede Xalid destnîşan kir ku li nava bajêr kêmasiya dermanan jî heye û divê zarok bên derman kirin Xalid wiha berdewam kir: "Hewldanên me hene. Ji bo ku metirsiya li ser zarokan ji holê rabe divê zarok bên dermankirin. Çend zarok bi kînorê ketin, me ew li nexweşxaneyê tedawî kirin. Lê derfet nîn in û nebûna derman jî xetereyê mezintirîn dike. Em li benda alîkariyê ne."

**Alîkariya dezgehea Barzanî**

Musa Ehmed Cihgirê Serokê Dezgeha Alîkariyê ya Barzanî jî daxuyand ku wan desteyek şandiye Kobanê û li gor raporên desteyan û daxwazên rayedarên Kobanê wan kêmasiya ard û xurekan tespît kiriye û ji bo kêşaya ard çareser bikin jî 70 ton xurek û ard şandiye Kobanê. Di berdewamiya axaftina xwe de Ehmed anî ziman ku ew jî li gor daxuyaniya Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî ya 'Parastina Kobanê çawa erka neteweyî be avadankirina wê jî erka neteweyî ye' tevdigerin û wan li Emerika û Ewrûpa'yê kampanyayên alîkariyê dane destpêkirin. Di berdewamiya axaftina xwe de Ehmed ragihand ku ew ê Kobanê û xelkê wê bi tenê nehêlin û weke Dezgeha Alîkariya Barzanî ew alîkariyê didin hemû kurdan û niha jî hewl didin ku alîkariyê bidin kurdên Kobanê

**"Kurd dê Kobanê ava bikin"**

Li hêla din Ehmed destnîşan kir ku ew digel du dezgehên alîkariyê yên emerîkî kampanyayên alîkariyê lidardixin û ewê pediviyên xelkê sivîl dabîn bikin. Her wiha Ehmed giringiya Kobanê ya ji bo kurdan jî bi bîr xist û wiha berdewam kir: "Tiştên ku li Kobanê pêk hatin ne tiştên ji rêzê bûn.



Xweragiriya hêzên kurd a li Kobanê, çûna Peşmergeyan a ji bo Kobanê, azadkirina Kobanê nîşaneya yekîtiya kurdan bû." Ehemd ragihand ku hêzên kurd parastina Kobanê kirin û ew azad kirin û dzgehên alîkariyê yên kurd jî bi kampanyayan ew ê Kobanê ava bikin û ew ê pediviyên xelkê sivîl dabîn bikin.

**"Paqijkirina mayînan berdewam e"**

Cîgirê Wezîrê Parastina Kobanê Öcalan Îso jî bal kişand ser operasyonên başûr û rojhilatê Kobanê yên li hember DAIŞ'ê û da zanîn ku zêdeyî gundên di destê DAIŞ'ê de ne hatine rizagrkirin. Her wiha Îso bal kişand ser operasyonên hêzên kurd ên li başûr û rojhilat jî û da zanîn ku DAIŞ di operasyonan de têk diçe û hêzên xwe ber bi Helebê ve dikşîne. Îso anî ziman ku xebatên paqijkirina mayînan jî berdewam dikin û hêzên Asayîşê jî tevlî komên navdewletî yên paqişkirina mayînan dibin. Îso, ragihand ku ji Danîmarka'yê, rêxistina bi navê Li Hember Xetereya Mayînan Perwerde û ji Navenda Neteweyî a Emerîka'yê çend deste niha mayînan paqij dikin û Koma Şêwirmendên Mayînan a Îngîltere'yê jî ewê di demeke nêz de dest bi karê paqijkirina mayînan bike.

**"Pêşmerge bi erka xwe ve rabû"**

Di diêrjahiya axaftina xwe de Îso ragihand ku mayînên ku DAIŞ'ê çandine xetereyeke mezin ji bo xelkê sivîl pêk tînin û xelkê ji Sirûca Rihayê vedigerin bajêr di rêyan de li mayînan rast tên û bêşek ji wan jiyana xwe jidest didin. Îso da zanîn ku ji ber teqîna mayinan heta niha 50 kesî jiyana xwe ji dest daye û zêdeyî 60 kesî jî birîndar bûne. Di berdewamiya axaftina xwe de Îso bal kişand ser rola Pêşmergeya di şerê û Kobanê jî de û wiha got: "Hatina Pêşmergeyan a ji bo Kobanê û şerê wan û yê YPG/YPJ'ê yê li hember DAIŞ'ê bi mehan di rojeva dinyayê de cih girt. Peşmerge bi erka xwe ve rabû û di operasyonan de derbeyên mezin da DAIŞ'ê"

**Piştgiriya MKPE'yê**

Li hêla din Meclîsa Konseya Parlementeren Ewrûpa (MKPE) jî bang li dewletên endamên xwe kir û ji wan xwest ku ew jî piştgiriya avadaniya Kobanê bikin. MKPE'yê di civîna bi navê "Tesîra çalakiyên koma terorîst a DAIŞ'ê ya li ser mirovan" de li ser rapora penaberan jî xala "Ji bo xelkê Kobanê yê bûye penaber dîsa li bajarê xwe vegerin divê alîkariya avadankirinê bê kirin." Bi cîh kir. Bi wê biryarê re MKPE'yê ji bo avadaniya Kobanê bang li 47 welatan kir û biryar gihand Wezîrên Komîteyê û parlementoyên welatên endam.

**Li Cizîre operasyonên hevpar**

DAIŞ'a ku li Kobanê, Til Hemisê xwe li hember berxwedana hêzên kurd negirt û têk çûbû û êrîşî Cizîrê û bajarên wê yên Til Temir û Serêkaniyê kiribû li wê herêmê jî hat feşkilandin û ji herêmê hat bi dûrxistin. Bi êrîşên DAIŞ'ê yên li ser Til Temir û Serêkaniyê rê hêzên kurd yekîneyên xwe yên li Amûdê û Dirbêspi'yê ber bi herêmê ve şandin û DAIŞ li wê herêmê hat şikestin. Rojnameger Ciwan Nebî yê ji







nêz ve operasyonên li herêmê dişopîne têkildarî mijarê daxuyand ku hêzên kurd li hember DAIŞ'ê operasyonên serkeftî tomarkirine û Hêzên Hevpeymaniyê jî beşdarî operasyonên hêzên kurd dibin û ew jî endamên DAIŞ'ê bombardûman dikin. Nebî bal kişand ser operasyonên hevpar ên Hêzên Navdewletî û şervanên kurd û wiha got: "DAIŞ paşve diçe. Operasyonên hêzên kurd ê serkeftî berdewam dikin. DAIŞ'ê tiştê ku li Kantona Cizîrê jî hêvî dikir bi dest nexist. Hêzên kurd û firokoyên Hêza Hevpeymanî operasyonên serkeftî pêk anîn."

**"DAIŞ Hasekê dorpêç dike"**

Li hêla din Şerê dijwar ê ku di navbera rejima Sûriyê û hêzên kurd de li Hasekê pêk hatibû bi dawî bû û niha jî li herêmê xetereya DAIŞ'ê dest pê kir. DAIŞ'ê çend caran bi wesayîtên bombekirî êrîşî bajêr kir û hewla komkijiyê kir. Hat zanîn ku DAIŞ'ê yekîneyên xwe yên Deyrazorê û Holê jî ber bi Hasekê ve şandine û bajar dorpçê kiriye. Rojnamenûs Nebî jî destnîşan kir ku Hasekê ji sê aliyan ve hatiye dorpeçkirin û DAIŞ'ê bajar ji xwe re kiriye armanca nû. Nebî bal kişand ser çalakiyên xelkê sûryanî yê ji bo Komkujiya Sayfo jî û eşkere kir ku hemû partiyên siyasî û şêniyên kantonê piştgiriya çalakiyan dikin û beşdarî çalakiyan dibin.

Konferansên ku ew ê ji bo avadaniya Kobanê li Ewrûpa û Amedê û li gelek cihên din birêvebiçin bi Konferansa Avadaniya Kobanê ya Kantona Cizîrê dest pê kir. Di 24'ê Nîsanê de li Cizîrê Konferansa Kobanê birêveçû. Di gel rêvebirên Kobanê, rêvebirên Efrîn û Kobanê jî beşdarî konferansê bûn. Rêvebirên kantonan yên beşdarî konferansê bibûn beşdarî kampanyayên alîkariyê jî bûn û banga alîkariyê li raya giştî ya cihanê kirin. Amadekariyên Konferansa Kobanê ya ku ew ê di 2-3'yê gulanê de li Amedê birêve biçe jî berdewam dikin.

**ENKS û TEV-DEM li Cenevre dicivin**

Hat zanîn ku ewê Encûmena Niştimaniya Kurd li Sûriyê (ENKS) û Tevgera Demokratîk a Gel (TEV-DEM) li bajarê Swedê li Cenevreyê li hev kom bibin. ENKS û TEVDEM'ê di 22'yê Cotmeha 2014'an de bi serperişteya Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî û bi Peymana Duhokê li hev kiribûn û biryara lihevkirinê wergirtibûn. Piştî avabûna Lêvegera Siyasî ya bi Peymana Duhokê re TEV-DEM'ê li Cizîrê hilbijartinên herêmî lidarxistibû û ENKS'ê jî ji ber taloqnebûna hilbijartina eşkere kiribû ku wê endamtiya xwe ya Lêvegera Siyasî rawestandiye.

**"Peymana Duhokê hewldana dawî bû"**

Li hêla din Serokê Herêmê Kurdistanê Mesûd Barzanî ji Radyoya Dengê Amerîka re axivî û bal kişand ser kurdên Rojava û eşkere kir ku tu biryara wan li ser ENKS'ê û TEV-DEM'ê tuneye û ew ji wan bendewarin ku xalên Peymana Duhokê bên bi cih kirin. Mesûd Barzanî di berdewamiya axaftina xwe de nerazîbûna xwe ya ji ber krîza siyasî ya di navbera ENKS'ê û TEV-DEM'ê de jî eşker kir û wiha got: "Ji bilî Peymana Duhokê tu plana ku em ji ENKS'ê û TEV-DEM'ê re pêşniyar bikin tuneye. Peymana Duhokê hewldana dawî ya Herêma Kurdistanê ye ji bo her dû bereyan."

**"ENKS xebatan dide sekinandin"**

Berdevkê TEV-DEM'ê Aldar Xelîl jî li ser krîza siyasî ya ENKS û TEV-DEM'ê rawestiya û piştrast kir ku ewê li Cenevreyê civînek di navbera herdû aliyan de Pêk bê lê dema civînê nehatiye teqezkirin. Her wiha Xelîl da zanîn ku çend kesên navdar ên ewrûpayî jî hewld didin ku krîza di navbera ENKS û TEV-DEM'ê de bi dawî bibe û ew dixwazin wan li hev bicivînin. Xelîl, di derheqê Lêvegera Siyasî ya Duhokê de jî anî ziman ku divê demil dest lêveger dest bi karê xwe bike. Xelîl di dirêjahiya axaftina xwe de beşdarnebûna ENKS'ê ya civînên Lêvegera Siyasî jî rexne kir û wiha axivî: "Niha Peymana Duhokê û karê Lêvegera Siyasî rawestiya ye. ENKS bi beşdarrnebûna civînên Lêvegera Siyasî xebatan dide sekinandin."

**"Efrîn cihekî stratejîk e"**

Li hêla din Cepheya El Nusra jî dorpêçkirina Efrînê didomîne. Hevseroka Kantona Efrînê Hevî Mistefa têkildarî mijarê agahî dan rojnameya BasNûçe'yê û anî ziman ku hêzên kurd ji parastina Efrînê re amadene û hewldanên El Nûsra'yê şerên propagandayî ne û xelkê Efrînê ji wan natirse. Her wiha Mistefa eşkere kir ku ji bo ewlekariya xelkê wan civîneke berfireh lidarxistiye û ewê parastina xelkê bikin. Mistefa wiha berdewam kir: "Efrîn di cihekî stratejîk de cih digre. Komên radîkal ê li Sûriyê hemû dixwazin Erînê dagir bikin û nêzî deriyên sînoran bibin."

**"Divê Tirkiye amborgoyê rake"**

Her wiha Mistefa amborgoya li ser Kantona Efrînê jî nirxand û da zanîn ku xelkê sivîl ji bo pediviyên xwe dabîn bike diçe Helebê û di rê de xelk ji hêla komên çekdar ve tê tacîzkirin û kel û pelên wan jî tên desteserkirin. Mistefa bangawaziya rakirina amborgoyê ya li gel Tirkiye'yê dubare kir û wiha pê de çû: "Deriyên Tirkiye'yê heta dawiyê ji komên çekdar re vekirîne. Lê ji bo me di her halî de ambargo heye. Ji bo dabînkirina pediviyên xelkê em gelek tengasiyan dikşînin. Xelk ji bo ku pediviyên xwe dabîn bike diçe Helebê, lêbelê li wê derê jî komên çekdar hene. Divê Tirkiyê demildest ambargoya li ser me ji hol rake û korîdoreke mirovî veke."



# Meletî

## Wargeha kevnare ya Ariyan

Welat Baz

Meletî, li Mezopotamya ya Jorîn di navbera Kurdistan û Tirkiyê de sînor e. Bajêr li jora tejene ya Firadê cîh digre. Rojhilat û bakûrê rojhilatê bajêr ji alî çemê Firadê ve hatiye pêçan. Başûrê xaka Meletiyê ji alî çiyayên Torosan, bakûrê bajêr jî ji alî Çiyayê Nûrheq ve hatiye bendkirin. Meletî, ji ber taybetiyên coxrafya xwe di warê parastinê de cîhekî stratejîk e.

Bajêr ji demên kevn vir ve, rêyên girîng ê Mezopotamya, Anatolya û Rojhilata Navîn gîhandiye hev. Rêyek ber bi Erziromê, rêyek ber bi Wanê, rêyek ber bi Amedê, rêyek ber bi Gurgûmê û yek jî ber bi Ruhayê ve diherike. Van rêyên ku li Meletiyê digîjtin hev, dêrêjî nav Anatolya, Qafqasya, Sûrî, Kurdistan, Îran û heremên din dibin.

Meletî di nav hêlîlarên rojhilat ê 38 û 39 û di nav hêlîpanên bakûr ê 37 û 39an de ye.

### Erdnîgar

Nîsbeta xaka bajêr 12 hezar û 313 km² ye. Ji axa Meletiyê % 45 çiya, ji % 12,9 ji deştan û ji % 41,6 jî ji platoyan pêk tê.

Bajêr ji deryayê 900 metre bilind e. Di nav xaka bajêr de gelek çiya û girên bilind hene. Torosên rojhilat ji alî başûr ve bajar derbend kirine. Rêzeçiyayên Meletiyê, Semsûrê ji bajêr diqetîne. Çiyayê herî bilind di erdîma Meletiyê de Çiyayê Şîlan e ku 2545 metre bilind e. Çiyayên Meletiyê ê din jî evin: Çiyayê Derbend (2428m), Çiyayê Kepez (2140m), Çiyayê Xeyrik (2306m), Çiyayê Boz, Çiyayê Reş, Çiyayê Tûcak, Çiyayê Şeqşeq, Çiyayê Hişk û Çiyayê Qertelan.

Li çiyayên Meletiyê teyrên kovî ê wek, werdek, qaz, kew, leglek, qertel û baz hene. Li herêmê, gur, rovî, keroşk û berazên kovî jî hene.

### Deşt

Li deşt û zêwiyên Meletiyê kiştûkal tê kirin û ji axê berhemên wek genim, pincara şekir, titûn û fasûlye tên sitendin.

Li xaka Meletiyê gelek deşt jî hene. Bajêr bi saya van deştan bi heremên din ve tê girêdan. Dîsa rêyên hesin û rêyên qîr ji van deştan derbas dibin. Deşta herî mezin Deşta Meletiyê ye. Ev deşta ku bi sedan km bilind e, wek zozana ye û 830 km² firehe.

Li van deştan zêdetirê kiştûkalê, fêkî û nebatên sanayiyê jî tên çandin. Herwiha Deşta Wêranşarê, Deşta İzol, Deşta Erxaç, Arga, Mixdî, Çemê Ziwa, Yazîxan û Surgî jî deştên bi xêrûbêrin. Li van hemû deştan kiştûkal û çandinî tê kirin. Ji ber van taybetiyan sûka hubûbatan a bajêr gelek qelebalix û şên e. û her cûrê berhemên axê tê temîn kirin. Meletî bi fêkiyên wek trî û sêvên xwe jî naskiriye. Ji triyê ku ji rezên Meletî tê çinîn, li fabrîqa Mazrayê şarabên navdar tên hilberîn.

### Arûng

Belkî jî berhem û fêkiya herî navdar ku Meletiyê bi Kurdistanê û dinyayê daye naskirin arûngên vî bajarî ne. Bi gotinekî din, qeysî ne.

Li gor belgeyên dîrokî arûng b.z di sedsala 4an de di sefera Îskender de hatiye Kurdistanê. Ji ber ku li vî welatî derfetên çandin û hilberîna vê fekiyê hebûye, evder bûye welatê arûngan. Cara yekem Tê hezrkirin ku arûng li Çînê hatiye danîn û ji vir belav bûye. Di dema Şerê Persîi û Romayiyan de jî, ji alî bazirganên Ermenî ve li İtalya û Yûnanistanê hatiye belavkirin û ji van deveran jî li dinyayê belav bûye.

Arûngên bazara cîhanê ji % 5, li Kurdistanê tê hilberîn. Dîsa li cîhanê tenê arûngên Meletiyê tên zivakirin û zivistanê tên xwarin. Li Meletî bi navên Arûnga Meletî, Arûnga Hecîxelîl, Arûnga Qîzahecî, Arûnga Hesenbeg, Arûnga Qalikhişk û çend cûrên din jî arûng hene. Arûng ji bilî Meletî, li Erzîngan, Mazra, Îdir û Qersê jî tê hilberîn. Ji bo hilberîna arûngan li bajêr fabrîqayekî jî hatiye damezirandin.

### Rêvebirî

Meletî li gor rêvebiriya pergalê parêzgeh e. 13 navçe, 33 nahiye û 505 gund û 872 komik bi bajêr ve girêdayî ne. Nifûsa Meletî ji 1 milyonî zêdetir e.

Navçeyên Meletiyê evin: Arga, Wêranşar, Hekîmxan, Erebgîr, Erxewan, Darende, Şîro, Qulûncax, Batalxazî, Çelaklî, Kele, Yazîxan û Çîrmikê.

Meletî ji bakûr ve cîranê Sêvaz û Erzînganê, ji rojhilat ve bi Mazra û Amedê, ji başûr ve bi Semsûrê û ji rojava ve bi Gurgûmê ve cîran e.

Şeniya Meletiyê ji % 90 kurd in. Gelek kurdên vê deverê elewî ne. Bajêr di warê demoxrafya xwe de nawendeke pîrreng e. Di demên kevn de li bajêr gelek Ermenî û Suryanî jî hebûn. Piştî dagirkirina Osmaniyan ve hin eşîrên tirkmen jî li bajêr bicîh bûn.

Dewleta Osmanî piştî ku di salên Şerê Yekem de ermenî û suryaniyan qirkir, di salên dawîn de jî li Meletiyê, Îsewiyên ku ji ber kêra wan filitîne, heland. Berê li Meletiyê metropolitî ya suryaniyan hebû. Lê îro li bajêr tenê çend malbat mane û dêra wan jî girtî ye. Rewşa ermeniyan jî wiha ye.

### Nav

Navê Meletiyê, ji Hititiyan maye. Navekî 5 hezar saliye. Li gor çavkaniyên nivîskî, di vê demê de ji bajêr re digotin 'Melitea'. Heman nav bi nuansan di çavkaniyên Asûrî û Ûrartoyan de jî derbas dibe. Kîtabeyên van şaristaniyan, navê vî bajarê kevnare wek 'Melîtea', 'Melîd', 'Melîde', 'Melîddû' an jî 'Melîta' qeyd dike.

Di dema Romayiyan de jî wek 'Melîta' an jî 'Melîtene' hatiye binavkirin. Ev nav paşê şeklê xwe yê îro girtiye û niha ji alî Tirkan ve wek 'Malatya', ji alî Kurdan ve jî wek 'Meletî' tê binavkirin.





### Dîrok

Ji kolanên arkeolojîk ê bermayiyên ser xaka Melediyê hatine kirin, eşkere bûye ku 4000 sal b.z, di dema kalkolîtik de însan li vê deverê bicîh bûne û şaristaniyan avakirine. Li gor dîroka niviskî Meletî di sala 1650'an de wek bajarekî Hititiyan bûye. Piştî 550 sal, bajêr di sala 1100an de dikeve destê Asûriyan û di salên 800an de jî dikeve destê Ûrartoyan. Medên bav û kalên Kurdan ji sala 612'an heta sala 550'an Melediyê bidest dixin. Paşe dema Persiyan destpêdike.

Di salên 330an de ku Îskender, Mezopotamyayê bidest dixe, nêzi 1000 salî, yanê p.z heta salên 650an herem di destê paşengên wî û Împaratoriya Romayê, paşê jî di destê Bizansiyan de dimîne. Di dema Bizansiyan de, di sala 712'an de girseyên ermeniyan li Meletî bicîh bûn. Dîsa p.z di salên 969'an de bi fermana Împaratorê Bizansê, ji Suriyê gelek yaqûbî hatin û li heremê bicîh bûn.

Heman sal fermandarê Artêşa Musluman Hebîb bin Mesleme bajêr bidestdixe û hukumdariya Ereban 400 sal dajo. Di salên 1050an de selçûqî tên heremê û Meletî êdî di nav begê wan û kurdan de dest dugehurrîne. Ev rewş heta 1400'an, yanê heta dagira osmaniyan dajo. Piştî ku Meletî dikeve destê Osmaniyan, di salên 1401'an de ji alî Artêşa Tîmûr ve tê xerakirin. Bajêr piştî serdestiya Osmaniyan cardin sererast dibe. Meletî di bin bandora serhildanên heremê de jî dimîne. Di sala 1580'an de, di Serhildana Celalî, di sala 1603'an de jî di serhildana Zeynel û Hemze Beg de xeradibe. Piştî salên 1847an wek liwa û sancax pêşiyê bi Xarpûtê ve, paşê bi Diyarbekir ve tê girêdan.

Li gor salnameyan di sala 1914'an de nifûsa bajêr tevî navçeyan 65 hezar e. Ji vana 18 hezar kes Ermenî ne. Piştî qira ermeniyan nifûsa wan heliya.

### Girêşêra

7 km dûrî nawenda Meletî, li herema Girêşêra ji salên 1932an vir ve kolanên arkeolojîk tên kirin. Ev kolan hem dîroka Meletî hem jî a Mezopotamya û Kurdistanê ji gelek aliyan ve ronî dike. Kolanên ku heta sala 1939'an domkir, di serkeşiya Luis Delaporte yê Fransî de hat meşandin. Piştî Şerê Cîhanê ê Dûyem di sala 1946'an de Arkeolog Schafer û ji 1962'an vir ve jî Arkeologê İtalî Palmîrî û Pûglîsî dest bi kolanan kirin. Kolanên li Girêşêra hîn jî didomin.

Di encama van kolanên arkeolojîk de derket holê ku, ev girik ji dema dawîn a kalkolîtîk, heta dema Îslamê wek nawendeke rûniştvaniyê hatiye bikaranîn. Herwiha Meletî ji ber ku di sînorê Mezopotamya û Anatolya de ye, ji demên kevn vir ve, bûye wek bêndera çanda van şaristaniyan jî.

Di kolanên Girêşêra de, berhemeke dema Hititiyan hatiye derxistin. Evder qesrekî biîhtîşam bûye. Çend ode, derî û dîwarên qesrê derketine holê. Di kolanan de fîgurên lawir û însanan, morên çapê jî hatine dîtin.

Kolanên arkeolojîk nîşandane ku, hin berhemên vê derê ji dema dawîn a kalkolotîk mane. Ev jî teqabulê 3 û 4 hezar sal b.z dike. Di nav van bermayiyan de paristgehekî 6 hezar salî jî heye. Kûp, firaqên gilower û hin wazoyên wê demê jî hatine derxistin. Van bermayiyan nîşandidin ku çanda vê derê perçeyekî ji çanda Mezopotamya ye.

Li ser vê qata kalkolîtik, berhemên dema tûncê hene. Di vê demê de bajar hîn jî bi pîlan e. Avahî li ser kolanên teng rêzkirin. Berhemên keramîk ku bi destan hatine çêkirin û firakên ku bi hacetan hatine çêkirin jî hene. Herwiha gelek bermayiyên biçûk jî di kolanan de hatine derxistin.



### Sedsala 20

Di serê sedsala 20an de wek hemû Kurdistanê li Meletî jî welatparêzî geş bû. Kürd Teawün Cemiyeti ku di ala 1908an de li Îstenbolê hatibû damezirandin, li herema Meletî jî dixebitî. Piştî salên Şerê Cîhanê ê Yekem jî ku li Amed û Mazrayê Kürd Teali Cemiyeti şaxan vekir, li Meletî jî gelek alîgir peyda kir. Yek ji wan Battalzade Xulisî Efendî bû ku şaxekî vê komela welatparêz li Erebgîra Meletî vekiribû. Di van salan de walî, yanî mutasarifê Meletî Xelîl Rehmî Bedirxan bû. Xelîl Rehmî welatparêzekî Kurd bû. Eşîrê vê deverê ê çekdar birêxistibû. Bi taybetî Eşîra Rîşwanan welatparêz bû. Di vê pêvajoyê de Majorê Îngîlîz Noel, ji bo çavderiya heremê û meyla welatparêziya Kurdan bibîne tevî Kamûran Bedirxan û Ekrem Cemîlpaşe di tebaxa sala 1919an de hat heremê û Xelîl Rehmî ziyaret kir. Yek ji xebatên Xelîl Rehmî Bedirxan jî ew bû ku duxwest tevî Waliyê Mazrayê Ali Galip Beg, Mustafa Kemalê serokê tevgera netewperestê Tirk bigre, lê ew bi serneketin û mecbûr man ku ji heremê veqetin.

Ev bajarê kevnare di gelek çavkaniyên kevn de jî cîh girtiye. Wek dû mînak ji wan, bîranînên Generalên Alman Moltke û çavderiyên gerok Ewliya Çelebî ne. Ewliya Çelebiyê ku di sedsala 16an de hatiye Meletiyê, vi bajarî bi gotina xwe wek 'deverekî çiyayan û a Kurdan' binavdike û wiha dibêje: ‚Ji ber ku hewa vê derê xweşe, zilamên wan heta 60-70 salên xwe jî li ser piya ne û diranên wan wek înciyan e. herçiqas gelek pîr bin jî rûyên wan sor e û gelek qelewin. Ji ber ku av û hewaya wê xweşe, însanên vê derê jî xweşikin. Li vî bajarî 7 cûr sêv hene. Xwedayê alemê rengekî wiha daye van sêvan ku sorê wan sor, morê wan jî mor e. Eşrafê Melediyê û jinên bajêr ê kibar bi şima li ser van sêvan şiîran dinivisînin.'

Li gor salnameyên Osmaniyan, berî serdana Ewliya Çelebî di sala 1560'an de nifûsa bajêr 8700 kes bûye. Ji wan 1300 kes Ermenî ne.

Generalê Alman Moltke jî ku di sala 1838an de tevî serleşkerê Osmaniyan Hafiz Paşa hatibû Kurdistanê û di tefandina serhildanên Kurdan de rol girtibû, di nameyên xwe de behsa Melediyê dike. Wê demê Meletî wek liwayekî bi Eyaleta Gurgûmê ve girêdayî bû. Dema Moltke tevî Artêşa Osmanî tê bajêr, nifûsa bajêr 12 hezar e û bi qasî 5000 avahiyên wê heye. Artêş ji bo ku zivistanê derbas bike, gelê bajêr ji xaniyên wan derdixe û bajêr dike garnîzonekî mezin. Gelê Meletiyê jî li ser vê yekê, deh km dûrî bajêr li taxa bi navê Aspûzû xaniyên nûh avadikin û li wir bicîhdibin. Moltke dibêje ku piştî leşker ji Melediye derketin û çûn, ne mumkûn bû ku xwediyên xaniyan malên xwe nasbikin, lewra leşkeran bajar xerakiribûn.

Meletî bi qehremanên xwe yen destanên jî navdayî ye. Yek ji wan Battal Xazî ye. Di derheqê Batal Xazî de tiştê ku tê zanîn ew ji Meletî yê ye û li dijî Artêşa Bîzansî şerkiriye. Qasî ku Ewliya Çelebî salox dide, di çavkaniyên Ereban de ew wek serkeşekî Musluman tê naskirin, ku Melediyê ji Bîzansiyan sitendiye. Tirkên ku bisedan sal piştî Ereban hatine heremê jî, Batal Xazî wek qahremanekî xwe didin nasandin.

### Kele

Di dema Romayiyan de p.z di sedsala 1an û di salên paş de Kurdistan seranser bi keleyan hatiye rîsandin. Kele ji bo parastin, ewlekarî, bazirganî û bajarvanî xwedî gelek fonksiyonan bûye. Ji ber vê yekê dema Romayiyan Meletiyê bidestxistine derûdora bajêr bi diwarên kelê asê kirine.

Kela Meletî li keviya Çemê Derme ye. Piştî zayînê di sedsala 1an de hatiye avakirin. Li gor belgeyên kevn 11 derî û 95 bircên kelê hebûne. Di dema pêşîn de gelek car hatiye tamîrkirin. Pîlana kelê pêncgoşe ye. Hin diwarên kelê bi kevirên rengîn hatine lêkirin û bi gelek motîvên balkêş hatine neqşkirin. Kela Meletî îro xirabeyeke.

### Mizgefta Mezin

Wek keleyan li hemû bajarên Kurdistanê mizgeftên mezin jî hene. Mizgefta Mezin a Meletî di sala 1224an de ji alî Alaadînê Keykûbat ve hatiye çêkirin. Mîmarê kelê, Yaqûbê Ebûbekir e. Mizgeft ji kevneşopiya mîmarî ya Selçûqiyan e. Çînî û mozaîqên hindirê camiyê di dewra xwe de mînak bûne. Minare û dîwarên camiyê ji kevir û liviran hatine avakirin. Mizgeft di salên 1970an de tamîr dîtiye.



## Sadettin Şan û Bilind Önen

# Bapîrên wan hewrêyên Mele Mistefa bûn

Siwar Bedirxan

DAIŞ'a xwe li eniyên şer li hember şervanên kurd ranagire û dibeze, bi xwekujan êrîşî ser sivîlan dike. Her wiha herî dawî DAIŞ'ê di 17'ê Nîsana 2015'an de li peytaxta Herêma Kurdistanê, li Hewlêrê li nêzîkî avahiya Konsulxaneya Amerîkayê, wesayîtek bombekirî teqand û di encama teqînê de 2 ciwanên ji Dêrika Bakurê Kurdistanê Sadettin Şan û Bilind Önen jiyana xwe jidest dan û 8 kes jî birîndar bûn. Bi rûdana teqînê re hêzên Asayîşê yek ji kiryarên bûyerê desteser kirin û her wiha herdu ciwanên kurd ciwan jî ji hêla Serokatiya Herêma Kurdistanê weke 'şehîdên Kurdistanê' hatin ragihandin û desteyek Pêşmerge ji bo serxweşiya herdu şehîdan hatin Bakurê Kurdistanê








### Peyama serxweşiyê ya Barzanî

Bi fermana Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî desteyeke ku jî Evdillayê Bişar Axa yê Fermandarê Berê yê Leqa 8'an û ji Mihemed Xalid, Osman Qasim pêk dihat ji bo serxweşiya herdu malbatan hatin Derikê. Li ser navê şandeya Başûr, Evdillayê Bişar Axa di serxweşiya malbatan de da zanîn ku ew bi fermana Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî hatine Bakurê Kurdistanê ne û Barzanî ew ji bo peyama serxweşiyê şandiye. Bişar Axa di berdewamiya axaftina xwe de destnîşan kir ku Barzanî tu cûdahiyê naxe navbera şehîdên Kurdistanê û haya wî ji hemû şehîdên Kurdistanê heye. Bişar Axa wiha berdewam kir: "Li ser navê Serokê Herêma Kurdistanê û Mesûd Barzanî em niha li Amedê ne. Peyama Mesûd Barzanî ev e; 'Bila serê malbata şehîd Bilind û şehîd Sadettin û serê hemû gelê kurd sax be. Eger şehîdên me nebin emê nikaribin li hember dijminên xwe şer bikin. Şehîd li ber dilên me gellekî şêrin in.' Cenabê Mesûd Barzanî şehîdan gellekî bilind dinirxîne."

### "Kurd bi kuştinê nayên tirsandin"

Di berdewamiya axaftina xwe de Bişar Axa ragihand ku DAIŞ ji bo hemû mirovahiyê xeter e û bi tenê Pêşmergeyên Kurdistanê li hember DAIŞ'ê radiwestin û şerê DAIŞ'a tûndrew ji holê rakirin. Her wiha Bişar Axa giringî û rola şehîdên Kurdistanê jî bi bîr xist û wiha berdewam kir: "DAIŞ ji bo hemû mirovahiyê xeterke mezin e. Bi tenê Pêşmerge li hember DAIŞ'ê rawestiyan û şerê DAIŞ'ê kirin. Pêşmergeyan DAIŞ da sekinandin. Şehîdên me ji bo xaka me ne û bo malên me ne. Eger ew nebin emê nikaribin li malên xwe rûnên. Miletê kurd bi kuştinê nayê tirsandin û xilas nabe."

### Endamên malbatên welatparêz

Sadettin Şan û Bilind Önenê li Aynkawa ya Hewlêrê di encama êrişeke bombeyî ya DAIŞ'ê de jiyana xwe jidest dabûn, endamê malbatên welatparêz in. Bilind Önen neviyê İzzet Axayê Dêriki ye û bapîrê wî di Şoreşa Gulanê de li gel Melle Mustafa Barzanî di eniyên şer de cihê xwe girtiye. Sadettin Şan jî kurê Ömer Şan ê û bavê wî jî yek ji danerê Rizgarîxwazên Neteweyî yên Kurdistanê (KUK/RNK) ye. Bavê Sadettinê şehîd Ömer Şan ji BasNûçeyê re axivî û da zanîn ku dilê Sadettin her li Kurdistanê bû û roj beriya rojekê dixwest herê Kurdistanê û di bin ala Kurdistanê de bijî. Şan her wiha ragihand ku kurê wî piştî kutakirina zanîngehê berê xwe daye Kurdistanê û zêdeyî 4 sala ye li Kurdistanê bû.

### "Kurê min şehîdekî Kurdistanê ye"

Di berdewamiya axaftina xwe de Şan bal kişand ser qehremanî û serkeftinên Pêşmergeyên Kurdistanê jî û da zanîn ku şehîdbûna û êşa kurê wî ne ya wî bi tenê ya hemû kurda ye û heta ku kurd yekitiyê saz nekin û yekgirtî li ber neyaran nesekinin ew ê nikaribin bi ser kevin. Şan kişand ser rola Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî jî û wiha axivî: "Êşa Sadeetin ne ya me û bi tenê kurê min şehîd nebûye. Bi hezaran şehîdên Kurdistanê hene. Heta ku yekitiya kurdan saz nebe, ez ne bawerim ku em biserkevin. Serkeftina kurdan bi yekîtiyê mimkûn e. Nabe ku her partî li gor serê xwe tevbigere û her tiştekî ber bi xwe ve bikşîne. Kurd di qonaxeke dijwar de derbas dibin. Li Başûrê Kurdistanê bi tenê Kak Mesûd Barzanî heye. Eger di siberojê de Kak Mesûd ne li ser erka serokatiyê be gelo kî dikare serokatiya herêmê bike? Serokatiya Herêma Kurdistanê herdu ciwanên me weke şehîdê Kurdistanê ragihandiye. Bi hezaran ciwan ji bo Kurdistanê bûne qurbanî kurê min jî yek ji wan e." Ömer Şan bal kişand ser rola Pêşmergeyan jî û da zanîn ku Pêşmergeyên Kurdistanê ji Kurdistanê dernekavin û ew xaka Kurdistanê weke namûsa kurdan dibînin û her bihosta xaka Kurdistanê ji bo kurdan pîroz e.

### "DAIŞ hatiye kirêkirin"

Xalê şehîd Bilind Önen siyasetmedarê kurd Fuad Önen jî piştî peyama Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî ji hêla destêyê ve hat bilêvkirin axivî û spasiyên xwe ji bo Mesûd Barzanî û desteya Pêşmergeyan pêşkêş kir. Önen bal kişand ser dagirkeriya dewletên herêmê yên ser Kurdistanê jî û da zanîn ku dagirkerên Kurdistanê DAIŞ ji xwe re kirêkirine û wê bi ser Kurdistanê de dişînin. Her wiha Önen eşkere jî kir ku salên dirêj yên bi şer li pêşiya Kurdistanê ne û divê siyseta kurd xwe ji vê yekê re amade bike. Önen bal kışand giringiya yekîtiya kurdan jî û wiha axivî: "Komara Îslamî ya Îranê, komara kemalî ya Tirkiyê, dewleta Iraqê û Suriye dagirkerin li welatê me. DAIŞ jî kirêgirtiyekî van dewleta ya û li wan zêdebûye. Mebesta van êrîşan rê li ber girtina serxwebûna Kurdistanê ye divê em vê yekê bizanibin û li gor vê yekê tevbigerin. 15-20 salên pêşiya me şer e. Divê siyaseta Kurdistanî xwe ji vî şerî re amade bike. Ev şer bi Kurdistaneke serbixwe û yekgirtî dikare bê kirin. Eşkereye ev netewe êdî ew ê xwe bi xwe birêve bibe. Bilind şehîd bû, serçavan ev êş jî para me ye. Jibîrnekirina şehîdan, bi xwedîlêderketina li doza wan mimkûne.

### "Bilind xwedî giyanekî netewî bû"

Hevrêyê şehîd Bilind Önen, İrfan Bahadin jî eşkere kir ku li Başûrê Kurdistanê ew bi hevre bûn û Bilind xwedî dilêkî Kurdistanî bû ew yek ji her tevgera wî dihat eşkerekirin. Bahadin da zanîn ku dema DAIŞ'ê êrîşî Maxmûrê kir wî û Bilind çekên xwe hilanîne û ji bo li hember DAIŞ'ê şer bikin çûne eniyên şer û li gel Pêşmergeyan cihê xwe girtine. Bahadin behsa hest û hewldanên Bilind ê li hember DAIŞ'ê jî kir û wiha got: "Dema DAIŞ'ê êrîşî Mexmûrê kir me rahiştin keleşên xwe û em çûn cem pêşmergeyan. Şer li wir gellekî giran bibû. Hêza navdewletî piştevaniya Pêşmergeyan dikir. Em çûn şerê li Çiyayê Zerdik jî. Şehîd Bilind xwedî giyanekî neteweyî bû. Parastina Kurdistanê ji bapirê xwe wergirtibû. Bapîrê wî rêhevalê Serokê Nemir Barzanî bû."

### "Em serbilind in"

Apê şehîd Bilind Dr. Ekrem Önen jî da zanîn ku dema li welatekî şerdiqewime tesîra wî şerî li ser hemû kesî pêk tê û hemû hemwelatiyên wî welatî dikevin bin tesîra wî şerî û êşa şehîdekî bûye para wan jî û ew bi şehîdbûna Bilind serbilind in. Her wiha bal kişand ser şandeya desteya Pêşmergeyên Kurdistanê û peyama serxweşiyê ya Mesûd Barzanî jî û da zanîn ku haya Serokê Herêma Mesûd Barzanî ji hemû şehîdên Kurdistanê heye û Barzanî hemû şehîdên hemû perçeyên Kurdistanê weke şehîd dinirxîne û rêzê ji wan re digre û ya ku hewce û rast jî ew helwesta wî ye.



## Gruba Xebate ya Vateyî

# Merdena yew ziwanî merdena yew miletî ya -2-



Nadire Güntaş Aldatmaz



Humara verêne de mi bi kilmî behsê tarîxçe û amancê Gruba Xebate yê Vateyî kerdbî. Seke şima kî zanê cigêrayox û ziwanzanê ke seba UNESCOyî gureyêne her serre datayê ke seba ziwanan dayê arê, atlasê xo de weşanenê. Nê atlasî ra gore kirmanckî/dimilkî/kirdkî/zazakî hîna tehluke der o.

UNESCOyî ra gore dereceyê tehlukeyê vînbîyayîşê yew ziwanî goreyê nê krîteran virazîno:

1.Aj ra be ajî kirişnayena ziwanî

2.Hûmara qiseykerdoxanê ziwanî

3.Goreyê heme şarî nîsbetê humara qiseykerdoxan

4.Vurîyayîşê (bedilîyayîşê) cayê ke tede ziwan qisey beno

5.Cayanê neweyan rê reaksîyonê ziwanî

6.Seba musnayena ê ziwanî û seba ke o ziwan biwanîyo û bêro nuştene, bîyayîşê materyalan

7.Polîtîkaya dewletan û dezgehan

8.Verê ziwanê xo de senînîya şarê komele

9.Senînîya (çiqas û çitur) dokumanan ê ke heqa ziwanî der ê

Ziwanzanan seba kirmanckî miheqeq goreyê nê krîteran qerar dayo ke kirmanckî tehlukeya vîndîbîyayîşî der o. Hîna ke no tespîtê înan çin bî kî endamanê Gruba Xebate ya Vateyî vengê zengilê tehluke heşnaybî. Coka înan luzimîya sazkerdena na grube dîbî û serra 1996 ra be nat kî gereyenê. Humara verêne de mi qalê tarîxçeya grube kerdîbî. Nika kî ez wazena ke tenê qalê xebata înan bikerî.

Seke mi verî ra kî vatîbî, amanco verên standart kerdena ziwanî ya. Çaye amanco verên no yo? Çike seba ke ziwan standart nîyo kirmancî mîyanê xo de kirmanckî qisey nêkenê, kitaban nêwanenê. Wexto ke ziwan qisey nêbî, nênusîya, nêwanîya kî peyder pey beno vîndî. Coka gureyê standardîzasyonî eynî wext de gureyê avêrberdena ziwanî yo, eynî wext de gureyê edebîyatî yo, eynî wext de seveknayena kulturî ya...

Çiqas ke amancê "Grûba Xebate ya Vateyî" yo sereke edebîyat nêbîyo kî bi nê gureyanê xo bingeyê edebîyatî kî eşto. Kombîyayîşê verênî ra têpîya, bi nameyê "Vate" de kovare veta. Na kovare de, leyê rastnuştîşî de şiîrî, sanikî, meseleyî kî nuştê. Dima kî bi teşwîqê na grûbe serra 2003 de, bi eynî nameyî weşanxane saz bîyo. Nê weşenxaneyî de lehçeya kirmanckî de zaf kitabî çap bîyê, hîna kî faalîyetê weşanxaneyî dewam keno.

Heta serra 2006 bi Kurdkî 654 kitabî vejîyê. Nînan ra 74 teneyî lehça Kirmanckî der ê. Nînan ra kî zafê xo hetê Weşanxaneyê Vateyî ra çap bîyê.

Merdim şîkîno vajo edebîyatê kirmanckî dîaspora de, sûrgûn de riçik esto. Na rewşe qedexekerdişê zîwanan ra eleqadar a. Serra 2003 de hukmatî qedexeyê kurdkî ke vazna ra, o wext ra nat kitabê kirdaskî û kirmancki hîna zaf yenê nuştene.

Na rewşe, tarîxçeya Vateyî ra kî zaf rind yena wendene.

**Çiqas ke amancê "Grûba Xebate ya Vateyî" yo sereke edebîyat nêbîyo kî bi nê gureyanê xo bingeyê edebîyatî kî eşto. Kombîyayîşê verênî ra têpîya, bi nameyê "Vate" de kovare veta.**

Mesela, nuştoxê ke GrûbaVateyî saz kenê û Kovara Vateyî vezenê, verê cû Swêd de yenê pêser. Dima bi serran welatanê Ewrupa de kom benê. Serrê de çar hûmaranê kovare vezenê. Serra 2002 de kombîyayîşê desîne ra dima hûmara 18. vezenê. Serra 2003 de aşma êlule de Weşanxaneyê Vateyî Îstanbul de kenê ra. Bi Weşanxaneyê Vateyî hûmara vîstîne ra(20) têpya dewreyê dîyîne dest pêkeno û kovare Îstanbul de yena çapkerdene. Dewrê dîyîne de kî nika 23 hûmarî vejîyê. Serra 1996 ra no het (nat) 27 kombîyayîşî bîyê, 43 hûmarayê Kovara Vateyî vejîyê. Nînan ra 20 teney Ewropa de, 23 teneyî kî Tîrkîya de vejîyê.

Endamê Gruba Xebate ya Vateyî nêzdîyê 30 kesan ê. Her kombîyayîş de nêzdîyê 20 kesî benê are. Ê ke îmkanê xo çin bî, nêşîkîyayî şerê cayê kombîyayîşî kî dûrî ra e-maîl rusnenê. Kesê winasî kî bi e-maîlanê xo dest erzenê nê karî. Çike cayê kombîyayîşî tim goreyê her kesî nîyo, tayîne ra zaf dûrî yo û tayê bese nêkenê ke şerê. O rî ra e-maîlan rusnenê, yanê karî ra dûrî nêvindenê.

Na grûbe heta kombîyayîşê 13. welatanê Ewrupa de kom bena. Kombîyayîşê 13. de birre kenê ke kombîyayîşê 14. welat de bikerê. Winî kî beno. Kombîyayîşê 14. 20-21 aşma teşrîna 2006 de Hewlêr de beno. Na grûbe hêdî-hêdî gama xo erzena welat. Dima wisarê serra 2008 de, Kovara Vateyî Dîyarbekir de buro kena ra. Kombîyayîşo şîyêsin (des û seşin) reyna Swêd de, yê hewtêsin (des û hewtin) Dîyarbekir de û heştêsin (des û heştin) kî Dêrsim de beno. Kombîyayîşo heştêsin ra tepîya yew Çewlig de, yew Dêrsim de, yew Sêwregi de, ê bînî kî Dîyarbekir de temamê xo 27 kombîyayîşî benê.

Endamê grube nê kombîyayîşan de senî xebetînê:

Çekuyê kombîyayîşê ameyeyî hetê grube ra tesbît benê. Her kes mintiqaya xo gore çekuyan ser o xebitîno û heme mitiqayan ra varîyasyonê yenê ruşnayene, çekuy yew kesî de (Mamosta M. Malmîsanijî de) benê arê. Mamosta M. Malmîsanij înan tesnîf keno. Seba yew çekuye kamcîn mintiqa de se vajîno, a çekuye kotî de nêrî ya, kotî de makî ya, tesbît beno. Dima çekuyan ser o hetê ziwanzanîye ra, hetê morfolojî ra, hetê etîmolojî ra û hetê fonetîkî ra muneqeşe beno û peynîyede kî heme varîyasîyonan ra yew çekuye bi raya(reye) endaman yena weçînitene. Bi kilmî karê grube nîya avêr şono.

Hîkayenuştox, şaîr û rojnameger Roşan Lezgîn kî yew makaleya de xo de nîya vano:

" Standardîzekerdişê kirmanckî (zazakî) surgunde gelek erey dest pêkerd. Grûbêk roşinvîrê kurdan ke bi hawayêko mecburî tayê welatanê Ewropa de sey multecî mendêne, serra 1996 de Swêd de kom bîy. Roşinvîrê ke şaristan û qezayanê cîya-cîyayan yê Kurdîstanê Bakurî ra bîy, xo bi nameyê "Grûba Xebate ya Vateyî" name kerd . Qaydeyê gramerê kirmanckî û formê çekuyanê ke sey standard ameyê qebul kerdene kovara Vateyî de day weşanayene. Kovara Vateyî ke hetanî nika 33 hûmarê aye weşanîyayê, kîşta nê xebatanê ziwanî de, esas seba averşîyayîşê edebîyatê nesrî yê kirmanckî wezîfeyê wendegehêk dî. Gelek nuştoxê ke reya verêne bi rayîrê na kovare musayî wendiş û nuştişê kirmanckî yan zî bi rayîrê na kovare wendiş û nuştişê xo aver berd, demeyêko kilm de her yewî di-hîrê kitabê hîkayan weşanay. Mîyanê şeş serran de, bi nameyê "Binê Dara Valêre de" (2002), "Halîn" (2006) ve "Ez Gule ra Hes Kena" (2007) hîrê kitabê Roşan Lezgînî, bi nameyê "Beyi Se Bena?" (2004) kitabêkê J. Îhsan Esparî, bi nameyê "Hîkayeyê Koyê Bîngolî" (2004) kitabêkê Deniz Gunduzî, bi nameyê "Hewnê Newroze" (2005) kitabêkê Munzur Çemî, bi nameyê "Omid Esto" (2006) kitabêkê Huseyîn Karakaşî, bi nameyê "Gorse" (2007) kitabêkê Jêhatî Zengelanî û bi nameyê "Xafilbela" (2008) kitabêkê Murad Canşadî, pêropîya new kitabê hîkayan bi kirmanckî weşanîyay."

Seke tîya de kî aseno, ê ke seba standartkerdişê kirmanckî kewnê raye, dima bîngeyê edebîyatê kirmanckî kî erzenê. Kovara Vate de hem hîkayeyê modernî û hem kî sanikî çap benê. Çiqas ke zor û zulmê asîmîlasyonî dewam bikero kî merdim şîkîno êdî qalê edebîyatê kirmanckî bikero.

# Sirgûnkirina 300 hezar kurdan!



Mehmet Gültekin

Jontirkan şerê cîhanê ê pêşîn wek derfet bikaranîn û ji bo avakirina netewa tirk ji xwe kirin armanc ku miletên ne misilman bi komkujî û koçberkirinan ji holê rakin û yên misilman jî pêşî ji taqetê bixînin û piştre jî asîle bikin. Di vê pêvajoyê de li vî welatî yek ji xwînxariyên herî xedar ên di dîroka mirovahiyê de qewimîn. Piştî lidarxistina fermana dewleta osmaniyan ya ji nîsana 1915'an bêhtirî milyonek ermenî, rûm û asûrî rastî komkujî û koçberkirinan hatin. Her weha ji belgeyên ku peyderpê ronahî dibînin eşkere dibe, çewa Jontirkan bi koçberkirin û asîmîlekirina kurdan ya bi zordarî ji xwe re kiribûn armanc. Di payîzda sala 1916'an Jontirkan dest bi meşandina vê planê kirin, bi sedhezaran kurd ji herêmên wek Bîngol, Palu, Muş û yên mayîn bi zorê berbi rojavayê koçberkirin.

Jakob Künzler ê mirovhiz û alîkarê bindestan ê Isvîçreyî ku di wê heyamê de li Ruhayê dima di bîranînên xwe "Li welatê xwîn û hêstiran" de trajediya miletên ku bûn qurbaniyên Jontirkan ji salên 1914-1918 radixe ber çavên me. Hin bi destpêka şerê cîhanê ê pêşîn Jakob Künzler dibe şadeyê wê yekê ku çewa li Ruhayê miletên ku bi hezar salan cînarê hevdu bûn ji ber propoxanda û pîjkirinan bi carekê de li dijî hevdu rabûn. Bi destpêka fermana ermeniyan û demek kurt piştre jî ya sirgûnkirina kurdan Jakob Künzler fêhm dike ku hemû ev bûyer bi plana nijadperestî ya Jontirkan û bi destê artêşa wan tê meşandin. Jakob Künzler di nav van trajediyan de bi hemû derfetên xwe hewl dide ku alîkariyan ji qurbaniyên bê mal û birçî re bigihîne.

Pirtûka Jakob Künzler yek ji çavkaniyên serke ê wan salan e. Em li vir beşeke ji bîranînên wî bi wergera xwe a ji zimanê almanî didin ku wî tê de bi taybetî salixê bûyerên sirgûnkirina 300 hezar kurdan kiriye.

"Wek diyar e ti rojnemeyeke Ewrûpî nenivîsand ku heman Jontirkan, yên ku dixwastin koka ermeniyan biqelînin, kurdên ku li Ermenistana jorîn rudinên û herçiqas ew li ser heman baweriya olî bin jî ji mal û milkên wan qewitandin. Ev yeka ji ber heman baheneya ku di destpêkê de bo ermeniyan jî dihat buikaranîn qewimî, ango qaşo ew civakeke bêewle ye û ew dikarin biçin xwe bispêrin rûssan. Gelo di peydabûna vê baweriyê de para helwesta kurdan çiqas hebû, ez pê nizanim. Tiştê ku ez dizanim, min di nav sirgûniyan de serbazên payebilind jî dîtin yên ku di destpêka şer de bi wêrekî dijî rûssan şer kirin û niha jî spasiya tirkan bi vî awayî dibînin.

Di zivistana 1916'an de koçberkirina kurdan ji Çapaxçûr, Palu, Muş, ango ji wîlayetên Erzirom û Bidlîsê destpêkir. Bi texmîn dora 300.000 kurd mecbûr kirin ku ew berbi başûr koçber bibin. Di destpêkê de ew li Mezopotamya jorîn bi piranî jî li Ruhayê û li aliyê rojava jî li Entab û Meraşê hatin bi cîh kirin. Di havîna sala 1917'an de jî bi berdewamî ew ji wan deran ber bi deşta Konya'yê koçber kirine. Mebesta Jontirkan ew bû ku ev komên kurdan êdî venegerin welatê xwe. Daxwaz ew bû ku ew di Anatoliya Navîn de peyderpê di nav tirkbûnê de bihelin.

Reftara li hember van kurdan di pêvajoya sirgûnkirinê de ji yê ermeniyan gelek cûda bû. Di rêwitiyê de ti tehdayî bi wan çênebû, divê ti kesî li wan ezîyet nekira. Lê belê tiştê herî tirsnak ew bû ku sirgûniya wan di zivistanê de qewimî. Dema komek ji sirgûniyên kurd êvarê digihîşt gundekî tirkan, gundiyan ji tirsa li hember wan bi lez deriyên malên xwe dadidan. Bi vî awayî ew belengaz mecbûr diman şeva zivistanê di bin berf û baranê de derbas bikin.

Roja din jî gundiyan bona kesên ku ji ber sermayê cemidî bûn gorên komdarî kolan. Kul û derdê wan komên ku di encamê de gihîştin Mezopotamyayê jî hîn neqediyabû. Li bajarên ku ew di avahiyên nîvxirabe, yên ku pêşde ermenî têde mabûn, hatin bi cîh kirin bi dayîna nan ji aliyê hikumetê xela ya di destpêkê de hinekî kêm bû. Lê di gundan de ev yek ne wisa bû, binecih li hember kurdan diketin tirsê û zexîreyên xwe yên ku jixwe kêm bû bi dilekî bi tirs diparastin. Bi wî awayî li wir jî di nav van bêbextan de birçîbûnê destpêkir.

Ji ber ku hikumetê bi çavekî hesûdî alîkariya min a bo ermeniyan şopandibû û ev bêçareyîya xedar a kurdan bi xurtî dilê min dişewitand, ji ber ku ew jî mirov û birayên me nin, min di meha çileya pêşîn a 1916'an de berê xwe da Helebê. Min dixwast bala konsolosên li wir bikişînim li ser tevgereke alîkariyê. Bi çalakiyeke wisa min dixwast bo ermeniyan jî ji nû ve alîkariyeke baş bê lidarxistin. Ev daxwaza min ji aliyê konsolosê Almanya û yê Amerîkayê de bi kubarî hat ecibandin. Dema vegerê ez ji gundên Sirûcê û yên deşta Heranê re derbas bûm ku ez derheqê hejmara hewcedarên alîkariyê yên vê herêmê de bibim xwedî fikirekê. Min li wir 30.000 mirovên wisa tesbît kir ku bi ser de her roj komên nû ji aliyê bakûr dihatin.

Min hin dawiya çileya pêşîn bersîveke sozdayînê ji konsolos wergirt û piştî demeke kurt birêz B. ji konsolosxaneya Amerîkayê bi 150.000 Franken hat. Konsolosê Elmanya jî ji min re 7.000 Frank şiyand. Pêşniyariya min ku li cihên cûda ce û genim bê standin û ez wan di nav van mirovên bêçare de belav bikim hat qebûl kirin.

Di mehên çileya paşîn û sibatê de min bi alîkariya hin mirovên wefadar di gelek gundan de nan da belavkirin. Ev ne karekî hêsan bû. Pir caran ez bi xwe bi sîwarî diçûm gundan ku bibînim ka ev kar baş dimeşe. Di gundekî de min tesbît kir, ew genimên ku me kirî bûn ne bi goreyî peymana me baş bûn. Min ji mirovên bircî rica kir ku ew warin gundekî din, ya ku riya 4 saetan ji wir dûr bû û li wir embareke me ya tijî hebû. Lê belê bi ser vê yekê li wir şîn û girîyeke mezin destpêkir. Mirovên nîvrût ku birçîbûna wan ji çavên wan dixuya xwe avêtin ber piyên min, lava kirin û xwestin ku ez wan genimên xirab bidim wana, yên ku wan dixwast bixwin. Ez mecbûr mam vê daxwaza wan a xurt qebûl bikim. Lê belê min nimûneyek ji wê genimê xirab bi xwe re bir û li bajêr li firoşkar nîşan da û xwest ku ew tonek genimê baştir wek serrastkirina vê zirarê bide. Piştî demeke kurt ew genimê ku hatibû



Im Lande des Blutes und der Tränen

Erlebnisse in Mesopotamien während des Weltkrieges

von

Jacob Künzler

Tempel-Verlag in Potsdam

kirîn qediya. Lê di wê demê de êdî bihar hatibû, diyar bû ku wê dexileke baş peyda bibe. Kurdên di gundan de ji ber birçîbûnê çêre dixwarin û dema ku waxtê çandinê hat, hewce bû ji bo wê kar bihata meşandin, wan ji ereban baştir kar dikir. Kurdan di karê çandinê de alîkarî dikirin. Lê belê zivistana 1917/18 birçîbûneke nû peyda kir. Her çiqas dexil baş derketibû jî lê birçîbûneke gelek xedar çêbû û ji ber wê hema nêzikî tevaya kurdên sirgûnkirî mirin.

Jontirkan ne tenê ermenî û kurd her wisa ereb jî xistibûn nav plana xwe ya qirkirinê. Divê ew jî bi xedarî bihatana qetilkirin. Ew di vê plana xwe de serfiraz nebûn, tenê ji ber ku wan nikaribûn bi hêsanî ereban bigirin. Yek jî wan dizanibû ku îngiliz piştgiriya ereban dikin. Serbazekî cendirmeyan ji min re got ku ger ew di şer(ê cîhanê) de serfiraz bin, tirkê hesabê xwe bi ereban re bibînin, û ew ê gelekî kêfxweş be ger ew bi xwe jî bikaribe beşdarî qirkirina wan bibe."







# Bo Kobanê 'Her Roj Yek Dolar'




Dilan Yaruk

Ciwanên kurd ên ku piştî erdhêja Wanê ya di sala 2011'an de pêk hatibû xwe li ser înternetê birêxistin kiribûn û ji bo şêniyê Wanê bi navê kampanyaya "Her Roj Yek Dolar" alîkarî berhev kiribûn xebata xwe vêcarê guheztin qadeke din û bo mexdûrên şer ketin nava hewldaneke nû. Komek ji ciwanên Bakur ku di dema erdhêjê de bi mehan alîkarî berhevkirin û pêdiviyên xizanan dîtin niha jî li Amedê bi navê Her Roj Yek Dolar komeleyeke alikariyê vekirin. Wek tê zanîn bi êrîşên DAIŞ'ê yên li ser Kurdistanê re li Bakur û Başûrê Kurdistanê gelek komeleyên alîkariyê vebûn û ji bo ku pedîviya xelkê dabîn bikin kampanyayên xwê didomînin. Niha jî ew komele ji bo avadaniya Kobanê dest bi kampanyayan dikin. Komeleya Her Roj Yek Dolar jî di çarçoveya avadaniya Kobanê de dest bi kampanyayan kir û di hewildana ku kampanyayên xwe li her aliyê Kurdistanê û hin deverên cîhanê bidomîne de ye. Serokê Komeleya Her Roj Yek Dolar Ebubekir Pilatin dide zanîn ku li Kobanê pêdivî bi alîkariya her cûreyên jiyanê heye û divê bi taybetî jî Kurdistanî bi rihekî seferberî piştgiriyê bikin.



## "Em destê alîkariyê ne"

Ebubekir Pilatin di destpêka axaftina xwe de eşkere kir ku kurd di bin zilm û zordariyê de ne û her tim pedîviya wan bi alîkariyê heye û bi mebesta alîkariyê gelek kes piştgriya wan dikin û bi taybetî jî xebatên xwe bi rêya înternetê dimeşînin. Pilatin di derheqê mebest û armancên komeleya wan jî agahî dan û wiha domkir, "Gelê kurd bindest e, komkûjî li ser pêk hatine û êrîşên tunekirina kurdan hîn jî berdewam in. Bi karesatan jiyana li Kurdistanê tê tunekirin. Ji ber ku pêdivî li gelek cîhan heye em jî dixwazin ku xebatên xwe bigîhînin her devera Kurdistanê. Mebest ew e ku li kê derê wêranbûn û xizanî hebe em hemû kurdan bo vê têxin nava xebatên piştgiriyê û birînên hev bikewînin. Bi boneya van tiştan me komele vekir û bi taybetî em li Amedê xebatên navendî dimeşînin."



Di dîrêjahiya axaftina xwe de Pilatin amaje bi wê yekê jî kir ku ji gelek welatên Ewrûpa û bajarên Kurdistanê endamên wan jî hene û ew jî amadene alîkariyê bibexşînin. Pilatin rawşa nebûna dezgehên kurdan ên alîkariyê jî bi bîr xist û da zanîn ku yek mebesta wan jî ew e ku li hemû bajarên Kurdistanê şaxên Her Roj Yek Dolarê vekin. Pilatin wiha axivî: "Pediviya xelkê me bi komeleyên alîkariyê he ye. Bo mînak xelkê me dixwaze alîkariyê bişîne ji Kobanê re ji Şengalê re lê belê nikare. Eger dezgehên me hebin ewê xelk serî li wan komeleyan bide û alîkariyên xwe ji ser komeleyan bişîne. Mebesta me ewe ku em li her bajarê Kurdistanê şaxekê vekin û xwe bigihînin xelkê xwe. Ne tenê bo cihên ku karesat rû didin lê ji bo xwendekar û lêkolînêran jî em dixwazin xebatan bidin meşandin"

## Li ser înternetê kampanyaya alîkariyê

Di berdewamiya axaftina xwe de Pilatin behsa erdhêja Wanê jî kir û da zanîn ku di wê erdhêjê de kareseteke mezin bi ser xelkê kurd de pêk hatiye û gelek malbat ji derve mane û wan bi kampnyayên alîkariyê piştevaniya xelkê Wanê kiriye û ew bi tenê nehiştine û wan bi pereyên ku hatine berhevkirin ji malbatekê re xaniyek stendine. Pilatin li ser xebatên ku li wanê kirine wiha got, "Xebata me ya yekemin li ser erdheja Wanê bû, em gelekî li ser meseleyê sekînin û di înternetê de kampanyayek mezin hat destpêkirin. Gellek kes ji civakê beşdarî kampanyayê bûn. Dikarim bibêjim ku me nezikê 70'ê hezar lîre berhevkir. Me bi wan pereyan ji TOKİ'yê xaniyek sitend û me da malbateke bê xanî. Em gelekî kefxweş bûn û me fêmkir ku em dikarin hertiştî bikin."

## Ji bo her bajarî pirtûkxaneyek

Her wiha Pilatin nebûna pirtûkxaneyên bajar û navçeyên Kurdistanê jî bi bîr xist û eşkere kir ku ew li ser avakirina pirtûkxaneyan jî radiwestin, mebesta wan ew e ku li hemû navçe û bajarên Kurdistanê pirtûkxaneyan vekin da ku xelkê kurd xwende bibe û ew xwe di wê çarçoveyê de berpirsiyar dihesibînin. Pilatin, ragihand ku di demeke nêz de ewê li navçeya Bismila Amedê pirtûkxaneyekê vekin û wan xebatên xwe yên di vê mijarê de jî bi dawî kirine û ewê pişt re jî bo Colemêrgê xebateke heman bidin destpêkirin. Pilatin ku bal kişand ser giringiya pirtûkxaneyan wiha got: "Hewceye li her bajarê Kurdistanê pirtûxxaneyek hebe. Lê belê pirtûkxane tune ne. Nebûna pirtûkxaneyan û kêmbûna xwendina kitêban arîşeyan derdixe. Em xwe di vî warî de jî berpirsiyar dihesibînin. Emê li her bajarî pirtûxaneyekê vekin."

## Pedîviya Kobanê bi alîkariyê heye

Wek tê zanîn piştî rizgarbûna Kobanê ya ji hêla hêzên kurd ve hemû dezgeh û komeleyên kurdan ketin nava hewldana alîkarî û ji nû ve avakirinê. Platîn bal kişand ser xebatên cûr be cûr yê bo mijarê jî da zanîn wê di demeke nêz de li Amedê konferansek bêlidarxistin û wiha dirêjî da axaftina xwe, "Şerên ku li Kobanê bû gelek zirar da bajêr. Her kes dikare alîkariya Kobanê bike û em wek komeleyekê em bi dil û can ji bo Kobane dixebitin. Li Kobanê kêmasî hene, kêmasiyên xwarin û vexwarinê, kêmasiyên av û ceyranê, kêmasiyên cih û waran gelekî zede nê. Emê di avakirina Kobane de jî cîh bigrin, çi ji destên me tê em ê bikin."

Di berdewamiya axaftina xwe de Pilatin eşkere kir ku roj bi roj pêywediyên wan bi sazî û komeleyên kurd re jî xurt dibin û ji bo ku ew karibin alîkariya xelkê kurd bikin pêdiviya wan jî bi alîkariyê heye û divê hemû kes beşdarî kampanyaya komeleya wan bibin. Her wekî din Pilatin eşkere kir ku hemû kes li welatê ku lê dijîn dikarin beşdarî kampanyayê bibin û bi qiymetê pereyî piştevaniya avadaniya Kobanê bike. Pilatîn destnîşan kir ku xebatên wan ên berhevkirina alîkariyê wê bê navber û li her qadê berdewam bike û di demeke nêz de ewê rû bi rû jî di nava civakê de cih bigrin bo komkirina alîkariyê. Pilatin wiha domand: "Em hedî hedî bi saziyan re jî tekîliyên xwe xûrt dikin. Deriyê me ji herkesî re vekirî ye. Em tu carî xwe bi şûn de nadin. Dema ku gelê kurd zedetir beşdarî kampanyayan bibe, em ê jî ewqas karibin alîkariyê bikin. Afîş û belavokên me amade ne, di nêzik da emê belav bikin. Ji bilî înternete emê rû bi rû jî bi civakê re bên hevdû."

## Alîkarî li xelkê vedigere

Ebubekir Pilatinê serokê komeleyê di dawiya axaftina xwe de bang li kurdên Bakur jî kir û da zanîn ku dibe ku berhevkirina yek lîreyî wek tiştekî biçûk bê dîtin lê daxwaz kir ku herkes bi zanîna ku ew xebat bi gavên biçûk hatiye destpêkirin lê niha gihîştiye asteke mezin û herkes li gorî vê beşdar bibe. Pilatin gotina xwe wiha bi dawî kir. "Komeleya Her Roj Yek Dolar dibêje, 'bila her kes, her malbatêk rojê yek lîreyî biaveje kumbarayekê û bila destên wan jî hînî berhevkirinê bibe.' Yek lîra tiştekî biçûk nîn e, hedî hedî mezin dibe û dibe kom. Ew alîkarî dibe pirtûkxane, dibe xebatên, sînema û şanoyê, ji malbatekê re dibe xanî, ji xwendekaran re dibe bûrs. Kurd di qonaxeke şer de derbas dibin û hewceye li hev xwedî derevin. Berê jî tiştên wisa hatin serê kurdan lê kurd di ber barê hev re rabûn û hevdû tenê nehiştin em jî wê heviyê dikin." Kesên ku karibin xwe bigihîjinin komeleyê dikarin bi rêya medya ya civakî rûpelên wan bişopînin û pêywendiyê li gel wan dêynin.

# "Muzîka kurdî bê dengbêjî nabe"

Mehmet Emin Kan

Te muzîka xwe li ser kelepora kurdî ya qedîm ava kiriye û yek jî nûnerên wê muzîkê teyî naskirin. Serpêhatiya te ya muzîkê çawa destpêkir?

Ez di 22 saliya xwe de tevlî NÇM'ê bûm. Dema ez çûm NÇM'ê Şehid Ali Temel pêşwaziya min kir, min stran digotin. Paşê jî min çend kilamên dengbêjiyê jî gotin, wî ji min re got; 'were em derkevine jor e.' Ez derketim jore min dît Apê Musa, Feqî Hûseyin Sağnıç, Apê Torî, İbrahim Gürbüz li wê derê bûn. Apê Musa ji min re got; 'Xorto heval dibêjin tu kilamên dengbêjiyê dibêjî, ka bêje.' Min çend stranên Miheme Arif Cizrewî gotin. Jî min re pêşniyaz kirin ez bi wan re vî karî berdewam bikim. Malbeta min koçber bûbû, kar û derfetên min tunebûn. Dema ez li Farqînê diçûm dibistanê, di dawiya hefteyan de min li dawetan distira. Rehmetiyê Şiyar li tenbûrê dixist, dawetên wê demê gellekî ciyawaz bûn. Weke mîtînga bûn, her partî li wê bûn û cihê kurdîniyê bûn.

Piştî 87'an tekiliya min û hinek freaksiyonên kurd re çêbûn. 88- 89'an de li Stebolê hevala li zaningehê komek ava kir û ez jî tevlî wê koma Koma Serdilan bûm. Me biryara çêkirina albumeke kurdî da. Di salên 90'î de me dikairîbû albûmên kurdî çebikin. Ne fermî be jî dema Turgut Özal yaseyek derxistibûn bi wê hinek me dikaribû bi kurdî muzîka xwe îcra bikira. Lê gotinê stranan bi tirkî bûn, me navê Kurdistanê dikir ‚gulistan.' Me kasetek bi navê ‚Zimanê Kurdî Zimanê me ye' derxist. Piştî wê jî me wek xebatkarên NÇM'ê dest bi xebatê kir. Ez wê demê li Kocaeliyê bûm jî mehê carekê dû caran diçûm û dihatim. Paşê di sala 93'an de li Amedê jî NÇM vebû. Min jî li vê derê dest bi xebatê kir. Di sala 93'an de ez wek xebatkarekî NÇM'ê her roj -heta îro- xebaten xwe yê hunerî berdewam kir û bûm endamê Koma Azad. Ev 23 sal in ez bi koma Azad re dixebitim. 25 - 26 sale jî karê hunera kurdî dikim.

**Bajarê Farqînê ku demekê navenda çand û kultur û siyaseta kurd bû û te jî navê xwe ji wê wergirtiye tesîreke çawa li ser muzîka te kir?**

Beriya 80'yî navenda hemû freaksiyonên kurdî li Farqînê bûn, hem çand û kultura kurdî serdest bû û hem gelek komelan li wir kar dikirin. Di karê kurdewariyê de tesîra xwe li ser hemû zarokên Farqînê dikirin. Mesela beriya 80'yî li Farqînê tu kesî bi tirkî ne dipêyivî. Ji ber ku bajêrekî kurdewar bû. Ji aliyê niviskariyê jî de tesîra Siyapûş, Şex Mizbah, Muhterem Biçimli hebû. Kesên şoreşger wek mînak Egît û yên din jî hemû ji herema Farqînê derketin. Ji ber wê jî wana tesîra xwe li ser civakê kiriye. Lê di aliyê çandî de yekem kesê tesîr li min kiriye Ozan Şiyar e. Yê dûyemîn mamosteyê min yê dibistana sereke Abdurrahim Xoce bû. wî bi kurdî ders dida. Lewre zarokên gund bi tirkî nizanîbûn. Paşê ez çûm navenda Farqînê. Dema li Farqînê min dibistan dixwend rehmetiyê Mehmet Geren hat Farqînê bû cîhgirê mudir. Li wê derê êdî min bi dest stranan kir. Ez û Zana Farqînî em di heman polê de bûn. Wî jî stran digotin. Hevalekî me şehid bû navê wî Abdulkerim Tanış bû. Em her sê di dibistanekê û di polekê de bûn. Me her sêyan bi hev re stran digotin.



Hunermend Farqîn di sala 1965'an de li navçeya Farqîn a Amedê ji dayik bûye. Piştî ku dest bi rêwîtiya hunerê dikê. Ozan Şiyar bandorek mezin li ser wî dike û berê xwe dide stranên kurdî û di sala 1989'an de tevî çênd hevalên xwe "Koma Serdilan" didamezirîne û di sala 1992'an de albûma xwe ya bi navê '' Zimanê Kurdî Zimanê Me Ye ''derdixe. Piştî ku Navenda Çanda Mezopotamya di sala 1992' an de li Stenbolê tê damezirandin Farqîn tevlî xebatên NÇM'ê dibe. Di sala 1993'an de bi vebûna şaxa NÇM ya Amedê re di Koma Azad de cih digre û albûma bi navê 'Şîmal' derdixin. Di sala 2001'ê de albûma bi navê 'Bihuşta min ' û di sala 2004 an de albûma'Şar' derdixin. Farqîn di xeleka „Şahiya Stranan' de jî tevî çend stranên xwe cih digre. Farqin di sala 2008 an de albuma xwe ya duyemîn ya şexsî bi navê 'Roj wê bê ' derdixe. Hunermend herî dawîn keda xwe ya 25 salan di albûma bi navê 'Derî 'de tomar kiriye. Ew niha li bin sîvana "Navenda Çanda Mezopotamya û Komeleya Çand û Hunera Dîcle Firatê" xebatên xwe yên çand û hunerî didomîne.

**Li ser ‚Derî' di ferhenga kurdî de gellek gotin hene. We çima navê albûma xwe ya nû kir ‚Derî?**

Armanca min di vir de ew e; tu deriyekî vedikî belkî ew derî bibe deriyê xêre ji bo me, li hêla din deriyekî vedikî nebaşî derdikeve. Lêbelê min di vir de xwest deriyekî xêre ji bo me û ji gelên Rojhilata Navîn re vebe û siberoja gelê Rojhilata Navîn rojên aşitî û azadiyê bi xwe re bîne. Di ve çarçoveyê de ez nêz dibim. Dema ku mirov derî binirxîne gelek wateyên vî tên gotin. Her derî bi xwe re derî yekî din vedike, her deriyek ji mirova re ronahiye tîne, Armanca min û wateya ku ez didim derî jî ev e; bila yekbûna gele kurd pêk were û azadî û aşîti jî Rojhelata Navîrn bi cih bibe gotiye. ez û Xalê Seyîdxan car din bi hevre dibejîn yek a Dengbêjiyê. yanî xebatek vek komûn çêbû.

**NÇM di kurdewariyê de cihekî taybet digre. gellek nivîskar û hunermend ji NÇM'ê derketin. Bêguman tesîra Apê Musa, İbrahim Gürbüz, Ali Temel, Feqi Hüseyin ji li ser we çêbû. Hûn nifşên wê demê çawa dinirxînin?**

Dema ku em diçûn NÇM'ê di destpêkê de ji me re gotin; 'hûn parastina zimanê kurdî bikin, hûnê parastina çanda kurdî bikin. Ji ber ku sîstema dagirker zimanê kurdî,çanda kurdî wek çanda xwe dibîne û asîmîlasyonê destpêkiriye dibe gerek li hember vê yeke helwesereke we ye xurt hebe.' Yekem car me ev yek bikaranî û ya din jî dema ku me Feqî Hûseyîn û Apê Musa nas kir wan ji me re digot divê hûn van tiştan biparêzin û li van saziya xwedî derkevin digotin; 'Hûnê zimanê xwe, çanda xwe pêşvebibin. Li hemberî sîstemê zimanekî, çandeke alternatîf pêk bînin.' Sîstemê êrîş dike dixwaze ziman û çanda kurdî têk bibe. Miletek tûne hesab dikin. Li hember ve yekê vê saziyê diparastin. Em li wir fêrî parastin û pêşvebirinê bûn. Mînak yekem cara ku ez çûm NÇM"e Elî Temel bixerhatina me kir. Ew ji bo me mînakên herî mezin in. Wan ji me re mîretek mezin hiştin û em jî ji doh heta îro ve mîrata van berdevam dikin û di pêşerojê de ji zarokên me re dikarin bingehekê rast deynin.

**Gellek kanalên muzîke yên kurdî vebûnê û gellek hunermendên nûh jî peydabûne. Ji van hunermandan re tê gotin ku bi kurdî nastirên û qelîteya muzîka kurdî xirab dikin. Tû van kanalan û vê yekê çawa şîrove dikî?**

Hevalên ku nû dest bi vî karî dikin ne di rastiya lêgerîna muzîkê de ne. Pirraniya wan li pey populerbûnê ne. Ewê çawa pereyan ji milet bistînîn ewê çawa konserta bidin bi wê wateyê nêz dibin. Hemû nêzîkatiya van ev e. Bê rêxistin, bê perwerdekirina mûzîkê dixwazin hema vî karî bi pêk bibin. Lê muzîka kurdî karekî wisa nine. Heke tu Evdalê Zeynikê nizanibî, tu dengbêjan nas nekî, tu di vî alî de lekolînan nekî, stranê gelerî tomar nekî, bi kurdan re têkîliya te tunebe pêkanîna vî karî jî zehmet e. Niha hevalên ku nuh dest bi vî karî dikin dixwazin muzîka nûjen, yanî ji muzika kurdî ya rêsen dûr bikevin. Divê em xwe ji vê dûr nekin, em perwerde li ser muzîka kurdî bîbinîn em li ser muzîka kurdî karên baş bikin. Heke em li ser muzîka kurdî lêkolînan nekin, em dengbêjan nas nekin, em çîrokbêjên xwe nas nekin, em dîroka kurda baş nizanibin emê ji Stenbolê nikaribin muzîka kurdî çê bikin. Problema me ya herî mezin jî ev e.

